


TİDSKRİFT
BERXWEDAN

Utges av
Kurdiska Demokratiska Riksförbundet

* * *

HS Offset

* * *

Konto No: 92 16 25 - 0





Berpirsîyar

MERWAN





BERXWEDAN

Kovara Kurdî

Xwedî: Federasyona Demokrat ya Komelên Kurd li Swêd





Navnîşan - Adress

c/o Kurdiska Bockafet
David Bagares gat; 12 nb
111 38 Stockholm
SWED


# XWENDEVANÊN HÊJA!

*Em lê bawerin ku "BERXWEDAN" bi hebûna xwe ji alî xebata weşînî de valahîyek dagirt.*

*Bi amanca hêzkirin û pêşxistin û tekûzkirina "BERXWEDAN"ê ji name û rexnên xwendevanan xuyane ku ew ê "BERXWEDAN" bi her hejmarekê ber bi amancê xwe ve bê rawestandin gavan bavêje; û baldarî alîkarîya xwendevanên hêja zaftir bikişî ne.*

*Lê ne ji hejmarek tenê re, ji bo her hejmarekê em li benda rexnên xwendevana ne. Lewra; rêya xwedîderketina kovarê ev yek bixwe ye.*

*Daxwaz û hêvîyên me ji xwendevanên hêja ev e ku; bi hûr-bijarî li ser hemû nivis û pergalên "BERXWEDAN"ê hevkarî û piştgirtîyên xwe bi nexşînin.*

*Bellê, bi rexne û hevkarî em "BERXWEDAN"ê bikin şaxên dara welathizî, ciha kanîya şoreşgerî.*

***Rojên hatinê yen me bin!***

# JÎ BER TÎRSA ŞOREŞÊ!

Di derheqên biryarê cîhbûna hêza çeleng de guhartin çêbû. Di radyoya Almanya Rojava, weşîna zmanê Tirkî de, M. Alî Birand li ser vê di 19 ê Çile 1983an de dîyar dike ku wê di derheqên biryarê cîhkirina hêza çeleng de, guhartin çê bibin. Navê hêza çeleng jî tê guhartinê. Û cîhê hêza çeleng guhurî ye.

Tê zanîn ku ji bo hêza çeleng, li Kurdistan'ê 10 cîhê balafirgehan dihate amade kirinê. Ev 10 cîhên balafirgehan, li hêllên Kurdistan'ê yên stratejîk dihatin çêkirinê. Mîna hêlla Wan'ê, Mûş'ê hwd. Êşkereye ku, emperyalîzm û sazûmanên zorbaz, li hemberê şoreş û tekoşînên rizgarîya gelên Rojhelata-Navîn xwe bikar dikin; karbûnên xwe bihêz dikin.

Mîna daxûyan dibe, li Waşington'ê dema destpêkê navê Tirkîyê tê daxûyankirinê. Lê, sedemê rewşa Tirkîye û ji ber dengên alema çihanê dev ji vê yekê berdidin û daxûyanê difetilînin, veşartî dihêlin. Li gohra daxûyana nûh, hêllên hêza çeleng firehtir dibin û navê hêza çeleng bi komitanîya giştî tê guhartinê. Wê, hêza eskerî, li Almanya Rojava bicîh bikin. Ji ber giranîya hêza eskerî, wê Misir cîhgera navça hêzê be.

Sebebên guhartina biryarên derheqê hêza çeleng de gellekin. Dibî ku ev, ji gellek alîyan ve bêne vejnandinê. Ger sedemên guhartinê bêne rêzkirinê bi kurte-birî ev yekin;

a– Ji bo maf û serdestîya xwe ya Rojhelata-Navîn, USA hemû rêya dide ber xwe û tevgeran pêk tîne. Van pêkanînên dijwar rêya hebûn û domandina xwe dibîne. Lê, mîna dewleta Hollanda, Frensa û hwd. ji ber mafên xwe yê Rojhelata-Navîn ray li van pêkanînên tazî naynin. Ji ber vê yekê, ku emperyalîzma USA bi zerpên tazî hilweşandinên bingehî amanc dike, ev hêll û hêllên radîkal û yên Îraq û yê Îran'ê, li hemberê perçiqandina hemû hêza derdikevin!

b– Ji bo parastina mafê USA, û hebûnê wê di Rojhelata-Navîn de Tirkîye, rola xwe bikar bîne, rêya rola wê ya polîtîkî neqedîya ye. Negihîştîye rêya dawîyê. Ji ber vê yekê di vê rewşê de xemlandina Tirkîye bi hêzeka tazî bi karanîneka baş nayê dîtinê.

Di vî warî de, emperyalîzm Rojhelata-Navîn rola îslamîyetê jî dide ber çavê xwe. Di têkilîyê van welatan de Tirkîye ji xwe ra destik dibîne. Û rola Tirkîye ya di nava konferansa Dewletê Îslamê de pêwîst dibîne. Ji bo ku mafê xwe li ser hêllên Rojhelata-Navîn û nexasim jî, li ser Îran û Îraq'ê pêk bîne, hewceyê rola Tirkîye ye. Pêşveçûnên vê yekê, di têkilîyên –welatên Rojhelata-Navîn– yên abûrî, siyasî, eskerî û hwd. de bi zelalî eşkere dibin.

yeka hûr-hûr diponijin. Lewra, ji şoreşên gelan ditirsin...

Eşkereye ku emperyalîzma USA; rewşa cihanê, rewşa Rojhelata-Navîn û rewşa welatên emperyalist, ji bo pêkanîna stratejîyê têr nabîne. Ev şert ji bi dest neketine. Hoyên polîtîkî negihane wê qeysê ku vê stratejîyê bi firehî pêk bîne. Mîna di berberîya nava Yunanistan û Tirkîye de xûya dibe, berberîyên nava NATO, tengasîyê paşverûkên Rojhelata-Navîn li ber



pêkanîna stratejîyê mîna bend radiwestin. Pêşveçûna hêza sosyalîzmê û pêşveçûna tekoşînên gelan, hêza emperyalîzmê di tengasîyên giran de asê digrin.

c– Li hêllên Kurdistan'ê cîhkirina hêza çeleng, wê li Tirkîye û li Kurdistan'ê rewşa sazûmana eskerî zelaltir bibe. Û ewê hemberîya gel bikişîne. Ewê rewşa nemirovî li ber gel derkeve meydanê. Şika vê yekê dikin ku wê têgihîştina gel bi kemile û ewê gel ber bi sefê şoreşê ve here. Di rêya şoreşê de ewê gel li hemberê vî pîlanê nemirovî derbikeve û ewê xebatên hilweşandina vê yekê bike. Ev ne tenê ji bo hêz û gelên Kurdistan'ê û Tirkîye, ji bo gelên Rojhelata-Navîn jî rast e. Ku ewê di bin gefên giran û zilmên dijwar de, şervanîya gelan bikemile. Û ewê li dijî vê yekê rawestin. Di Rojhelata-Navîn de hatineka bi vî awahî ji bo ku li dijî mafê emperyalîzmê ye –ku ew jî vê daxûyan dikin– li van

Ji alîkî ve daxûyana bûye, rastîyekî vedişêre. Lewra; ji bo bikar anîna Tirkîye, ev rê, herdem vekirîye. Vê dibin çi navan de bikar binin jî, dîsa rastî ji gelên cîhanê nayê veşartinê. Lewra, daxûyana Wezîrê Derva Îlter Turkmen vê eşkere dike ku; "ji bo hêza çeleng ne hewceye ku cîhên nûh vebibin. Ji bo vê derê bikar bînin, ne pêwîste ku biryar bêne sitendinê. Lewra, herdem rêya vê yekê heye". Ne pêwîste gotin bê dirêjkirinê, lewra daxûyan hemû yekan eşkere tîne holê.

# Her roj kuştinek eşkere dibe!

Bi hemû destikên hêza xwe ya qolonyalist cunta leşkerî li ser gelê me nîrê qolonyalistîyê dijwartir dike.

Ji zilm û zorbazîyên bê hed, bi netîca zerp û îşkencên hovîtî ku, kuştin û qetlîamên nemirovî pêk tên, hewqas gihane wê qeysê ku qolonyalista Tirk, bi destavêtina hemû rê û destikên xwe dîsa , nikare wa bineximîn e.

Mîna welathizekê Kurdistan daxûyan dike, bi destên hêza qolonyalîst li Wêranşehir'ê di navbera 14.11.1982 û 16.11.1982yî de di bin işkence û zerpên giran de du welathiz têne kuştinê. Navên van hogirê hêja Mehmet Aslan û Îbrahîm e. Tê te zanîn ku di girtin û seravêtinên gund û bajêran de, bi zilm û zorbazîyên hêza qolonyalista gellek xweşmêrên gelê Kurdistan'ê têne kuştin. Û kuştî demên dirêj nexmandî dimînin. Û hê jî gellek kuştin eşkere nebûne. Ji hêllên hepsa ta hêlla gunditî; gellek bûyerên, kuştinê û qetlîama veşartî ma ne. Karbidestên faşist ji ber berxwedan û bûyerên hepsê û ji ber kuştinê hêllên gunditî, nas û malîyên girtîyan dixin bin zerp û gefên giran. Li ser van hêla hêza eskerî kêm nakin. Dixwazin wan bê deng û bê hiş bihêlin. Ku kes bi bûyeran ne hise, û bûyer nêne zman. Gellek caran ji, nas û malîyên wana digrin. Û demên dirêj dibin işkencê giran de wan dihêlin.

Lê, di nava van hemû zerp û zorbazî, işkence û gefên giran de be ji, dîsa bûyer neximandî namînin. Dembidem eşkere dibinû rastî derdikevin meydanê. Lewra: gelê me yê rizgarixwaz. di nav hoyê dijwar da be ji dîsa, biryar qetlîam, hovîtî û işkencê karbidestê faşista derdixe der. Û ji nemirovî û pêkanînên qolonyalista Tirk, hesabê nemirovî, işkence û qetlîama pirs bike.

# CİVÎNEK Lİ SER ÎŞKENCE Û LÊDANÊ

Di 11 ê Nîsan 1983an de li saloneka parlementoya Swêd, civînek li ser işkence û pêkanînên nemirovî çê bû. Ji gellek welatên Ewrûpî berpirsîyar û endamên yekîtîya avukatan û guhdarvan li civînê pêşdar bûn. Çend ji hevalên federasyonê û Av. H. Yildirim di civînê de pêşder bûn.

Piştî berpirsîyarê Yekîtîya Avukata civînê bi axaftineka dirêj, li ser işkence û lêdanan vekir pê de, berpirsîyar û endamên komika li ser işkencê û lêdanan, zerpa li ser avukatên li van welatan, ku karbidestên wan îşkencê ji xwe ra kirine sîstemekî, sekinîn. Îşkence û eziyetên girtîxana pêşkêşî civînê kirin. Avukatên endamê Amnestî û temsîlkarê Amnestîyê li ser rewşa girtîxanan Diyarbekir peyivîn.

Li ser axaftinên wan Av. H. Yildirim bi kurte-birî, serpêhatina xwe daxûyan kir. Û li ser rewşa girtîxana Dîyarbekir van yekan pêşkêşî civînê kir; *«Hemû mafên mirovî li zincîrê hatine girêdanê; dibin îşkencê de ne. Tu heqekî girtîyan tune ye. Mafê parastinê ne berê hebû, ne jî wê bidne wan. Yên ku li hember hovîtî û nemirovîya wan, û li dijî amancên wanê dijmirovî radiwestin. Di nav hemû êş û işkencan de li hember van sîng vedigrin, bi awayên wisa kuştin ku hiş û aqilên mirovan nagre. Bi pêkanînên nemirovî mahkemên xwe gihandine qeysa gîyotînê. Karbidestên cunta qolonyalîst bi van pêkanînên nemirovî poz ji tu tişteki nakin. Li hemberî hemû mafên mirovî radiwestin. Bi hovîtî û nemirova ya xwe gellek şoreşger û rêberên tekoşîna gelê me Kurdistan'ê bi hovîtî kuştin. Û hê didomînin. Gellek kuştin û qetlîam çêbûn e. Û hê derneketine derva. Min di jîyana xwe da dît ku, ew ê van xweşmêrên Kurdistan'ê bi hemû metod, leystik û fena wê dibin işkence û hoyên girtîxanê de bi kujin. Girtî, her ro li ber mirinê ne. Nêzî sed kesa, navê wan jî dikarim eşkere bidim ku wê ro-biro, bere-bere wê wan bikujin û vê eşkere jî dibêjin. Mîna hestîkî rût ma ne. Li van pêkanînên qolonyalista Tirk, cunta faşîst tê heyîrandin ê. Lê ez bawerîm ku pêkanînên nemirovî, hovîtîya li ser girtîyên girtîxana Diyarbekir pêk tên, anîna zman, têgihiştina van yeka ne mumkin e. Lewra hiş û mêjû vê hovîtîyê nagre, gotin û zman têr nayên».*

Piştî hêvî û diyarkirina daxwazan, giranîya civînê piştgirtina axaftina H. Yildirim va karên xwe yê vê hêllê da xûyankirin pê de, civîn bi axaftina dawîyê qediya.

# BORÎNA SEDAM'Ê FAŞÎST!

Karbidestên sazûmana faşist, bi navê Sedamê faşîst belavokek dîyarê alema beşerî û hêllên weşana kirin.

Ku aşîtî û biratîya gela dixwaze(!). Li ser maf û biratîya herdû gelan amanc dike ku şer raweste(!). Naxwaze xwîn birijê(!).

Belavoka sazûmana xwînrij û qolonyalîst xwe bi hemû rengan dixemilîne. Lê alema beşerî, gelên Rojhelata-Navîn û gelê Kurdistan'ê, dibin hemû kirasan de rûkên nemirovî, rûreşiya qolonyalista faşist, xwînrij û mafparêzê emperyalîzmê nas dike, û vê dibîne. Lewra ewê ku, di Rojhelata-Navîn û li navnetwa de, li hember azadixwaza, li dijî mafê gelên jêrdest radiweste, dijberîtîya gelên rizgarixwaz dike. Û hima sazûmana xwe ya faşist, li ser pêlên xwîna welathiz û şoreşgeran disekinîne. Bi dehan welathiz û şoreşgeran bidarvekiriye û vê didomîne. Tenq, top, balafir û êrişên xwe li ser gelê me kêm nake. Li ser gelê me, û gelê Îraq'ê ji bo mafê emperyalîzmê zorbazî û zilmê bêhed kirîye.

Tê zanîn ku, karbidestên Îraq'ê, ji ber pêşveçûnên Rojhelata-Navîn û ji tesîra tekoşîna şoreşa û ji ber tekoşînên hundir ji di keftelefteka giran da ye. Û li ser mafên nemirovî, bi amanca dijberiya mafê gela herdû sazûmanên qolonyalist şer di domînin.

Di pêvajoya qolonyalistiya nûh de, bê hêza abûrî, civakî, sîyasî û alema beşerî, bi hemû awahî, USA alîkarî bi Sedamê faşîst re dike. Dîsa ji bo hebûn û mafê USA li Rojhelata-Navîn bêne parastinê û di pêşkêşiya Tirkîye'ê de, bêne sitrandinê, ji her alî ve alîkarî tê kirin ku, ev sazûman ji bona pêkanînên li ser Rojhelata-Navîn ji Tirkîyê re bibe pêplûkek.

Jixwe tengasiya emperyalîzmê û karbidestên qolonyalist, ji vê dest pê dike. Lewra, gelên Rojhelata-Navîn û gelê me ji bo tekoşîna serxwebûnê, hebûna xwe dane ser rêya rizgarîyê û li hember pêkanînên nemirovî radiwestin.

# MA EM DİQEDİN!

Bi sazbûna cunta eskerî, hejmara şoreşgerên bidarvedibin, zêdetir dibe. Piştî hilbijartina "Referandum"ê ku cunta jê piranîyeka giran ray sitend, ji bo zilm û zorbazîyên dijwartir, piranîya raya li hemberê gelê me mîna destikekî dide xebitandinê.

Mîna tê zanîn, piştî "referandum"ê eskerên cunta li welatê me mîna xwe ji nûh ve bikar anîbin, li hemû derdorên Kurdistan'ê dest bi operasyon û girtinên nûh kirin. Bê hejmar welatîyên me, dagirtin girtîxana, xistin bin işkenca. Ji bo tirsandin û melisandina gel, dest bi dor vegirtin û tetbîqata kirin. Hilbijartinê mîna darê zilmê li ser gelê me da xebitandinê. Zilm û işkencên girtîxana girantir kir. Bê hay û baya nasên girtîya esîrên destê xwe bê deng kuşt. Hemû hêza xwe ya eskerî ji nûh ve li Kurdistan'ê bi cîh kir. Bi her awahî xwe karê Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê dike. Di nav pêkanînên hovîtî û zerpên giran de ev jê re amanc e.




Dîsa, bi bê deng û his li ser hev 5 şoreşgera bidarvexist. Mîna cunta; li hemberê alema beşerî raweste, bê gumana tutîştekî van yeka bikar anî. Ta pêkanînên nemirovî gihande wê qeysê, ku 5 kesên nesîyasî jî, bidarvekir. Generalên faşîst mîna pêxwasên ku poz ji tutîştekî nakin, kuştin û bidarvexistinên refî bikar anîn.

Di 24 ê Çile 1983an de li Edenê Ali Aktaş û di 30. Çile 1983an de ji, Ramazan Yukarigöz, Ömer Yazgan, Erdoxan Yazgan û Mehmet Kambur jî li İzmîr'ê bi darvexistin. Ji xeynî van du kesa li Emasya yê, yên din jî li Balikesîr, Afyon, İsparta û li Konya yê bidarvekirin. Bi van bidarvexistinan hejmara bidarvekirina gihîşte 36a.

## Jİ DİLÊ XORTÊ KURDİSTANÊ TİRSÎYAN!

Hêza qolonyalîst di operasyonê Wartoyê û derdorê hêllê de, xorteki 17 salî kuştin.

Hêza qolonyalîst, refa xwînrij zerp û zorbazîyên li Kurdistan'ê pêk tîne. bi dijwarî û hovîtî li hêla Mûş'ê û derdorên hêllê didomîne. Nexasim ew hêllên ku li nav gel, bingehê welathizî bi hêze, li derdorên van hêlla pêkanînên nemirovî bikar tînin.

Karbidestên faşîst, nêzî meha Kanûn'ê li derdor û li Wartoyê dest bi girtinê pirane kirin. Nexasim giranîya xwe dane ser gundê A...., û R... . Li van dera gellek xort û zarûkan girtin. Li cîhê işkencexana bi metodên hovîtî, wan di işkencê nedîtî de derbas kirin. Di 25 ê Mijdar'ê de Feyzullah Işik girtin. Hêzên qolonyalîsta Feyzullah, di birin binê qereqola polîsê Mûş'ê. Wî di işkencên giran de, hê şeva girtinê wî bi hovîtî dikujin. Di danezana "tib"ê de, tê nîşandan ku bi işkenca elektrikê, bi lêdanê giran hatiye kuştinê. Sedemê, derbûna kuştina Feyzullah, hêzê qolonyalîst li ber vê kuştina eşkere bê rêya neximandinê ray li kuştina Feyzullah tînin.



Lê, hêzên qolonyalîst ji daxûyanbûna bûyerê hêrs dibin, mîna seh'ê har ku ji xwînê têr nabe, ew ji bi kuştina vi xortê Kurdistan'ê têr nabin. Ji bêçareyî kekê Feyzullah jî digrin. Û dixine bin işkencê. Hêzên qolonyalîst bi hemû huner û destikên xwe nikarin kirasek li vê kuştinê bikin. Gelê me, mîna di hemû bûyerê jiyana xwe de bi vê bûyerê, hêrs û hemberîya li dijî dijmin kûrtir dike.

# CUNTA FAŞÎST HARBÛ YE!

Çewa li hêllên Kurdistan'ê, piştî hilbijartina "**Referandum**"ê, zilma karbidesta cunta faşîst girantir bûbe, li hêlla me jî, operasyon, girtin, zerp û zorbaziyên hêza qolonyalîst, bi hovîtî didomin.

Hêzên qolonyalîst di operasyonên dawî de yek-biyek davêjin ser gundan. Li der-dorên gunda mîna seh'ên har pêkanînê hovîtî bikar tînin. Bûyera nîşana hovîtiya operasyona hêza qolonyalîst, li hêla Hezro'yê, li gundê qahwecî çê bû. Hêzên qolonyalîst davêjin ser vê û der-dorên qahwecî digrin. Gundîya li hev kom dikin. Jin û zarûya, xort û bapîran têdixin binê lêdanê. Dawîyê, qevda kezîyê jina li destên xwe dipêçin û wan li dû xwe li ser kevir û kêsekan di kişkişînin. Di vî halî de, bi simên xwe pihîna li newq û singên jina dixin. Heta ku bêhiş bimînin, xwuşk û birayên me dibin işkenca de dihêlin. Bi van hovîtiyan jî qîma wan nayê. Radikin gundîya li hev dicivînin. Û wan di bin ser gireki, li vê derê wan hebo-hebo gêndirî xwarê dikin. Bi vê gellek gundî seqet dimînin. Di vê pêkanînê de gundîyekî 45 salî, Nûrettin, sere-jêr berdidine xwarê, singa Nûretin di dewixe navê û ev gundiyê belengaz di vê îşkencê de tê kuştin.

Bi kuştina kedkarê Kurdistan, esker li hev civîya û bi lez jî vê derê bi rê ketin û çûn. Lê, ji bo ku, li hawidoran bûyer nêbihistin û kuştina kedkarê Kurd, bê veşartinê doktoreki ji Hezro'yê anîn kivşê. Lê kuştina vi kedkarî ne kuştineka ku karibin biniximînin. Lewra kuştin, hewqas eşkere bi nîşan bû ku, doktor jî li ber vê kuştinê bê fesal ma. Nikaribû biniximin e. Piştî ku hemû destikên wan bi kêr nehatin pê de, ferman dane esker û hemû gundîya li hev dîsa civandin. Piştî gotebêjeka dirêj, eşkere gefa li gundîyan xwarin ku gundî, li ser bûyerê nepeyvin, bi tu hêlla nedine hisandinê.

Dîsa di sergirtina gundê Enyheseniyê de, gundîya li hev komdikin. Di nav herî û kevira de wan digerînin û gêndir dikin, li erdê di kişkişînin û wan davên bin feleqê. Ji nav koma gundîyan sê gundî derdixin û dibine pişta gir. Li wê derê ji bo dengên qêrîn û barînên wan, bê gundîya işkencê giran li wan dikin. Demekî dirêj wan işkencên dijwar didomînin. Dawiyê li derê işkencê dengê çar-pênç çeka tê. Piştî bêdengîyeka dirêj, esker tên vê yekê dibêjin: "**me wan kuşt!**". Seresker wê hingê li gundîya vedigere, çêr û gefên nemirovî li wan dike. Ji wan re wiha dibêje; "**Ger wun mîna me nekin, emê vê bînin serê we... Emê we bikujin...!**"

Bi van leystikê rûreş û pêkanînên hovîtî jî têr nabin. Gundîya hemû dixine nava avê û wan bi zerpê dibinê avê de dihêlin. Ta ku bîhna gundîya diçike, têne ber qeysa fetisandin û bêhişketinê, vê yekên didomînin.

Hovîtîyê eskerên qolonyalîsta Tirk, li hêlla Sason'ê bi zanîn û eşkere ne. Li vê hêllê, di van nêza de, davêjin ser gundê Zîlan'ê. Piştî eziyet û zerpên giran, mîna seh'ên har bi çavsorî, van yekan li gundîya dikin;

Destên îxtîyaran li hev û dû girêdidin. Dawîyê rûyê wan bi beneki, li destên wayê girêdayî ve asê girê didin. Û bi sim û dar û çek û kulma dest bi lêdaneka dijwar dikin. Dema li ber lêdan, ser û çavên xwe diparêzin, an xwe dilibitînin rûyê ixtîyara qevd-bi qevd ji qumê ve radibe, ser û çavê wan di xwînê de dimîne. Vê li ser jina jî dicerîbînin. Qevdên keziyê wan, li hev girê didin. Û dest bi lêdanê dikin, dema xwe ji lêdanê birevînin, xwar bikin an ji xwe biparêzin qevdê keziya jî binî ve radibe. Bi kurtî: hovîtîya wan, nayê gotinê... Berî hemûyan pêşî dibî ku ji Kenan Evren û hevalbendên wî, bêne pirsîn; çima vê yekê dikin? Sûcê van kesa çîye? Hurmeta we ji mafên mirovî re çiqas e?

Rastî: bi hezar caran derketîye meydanê. Hê ji ew hovîtîya xwe ya ji bav û kalan me ye dimeşînin. Lê, emê bijîn.

Silavên şoreşgerî..

## ZÎNDAN

*Ger ji şerek*
*Hildabin û te veqetandibin;*
*Û ger ji alîkî te xwîn bê*
*Ji wî şerê sip-sor;*
*Namelisî û ne bê deng bî*
*Çar hêllên te zindan bî çi dibe!*

*Ger li derva*
*Daxwazên te bahozan radikin,*
*Û dilê te mîna wolqan*
*Li benda teqandinê*
*Mîna fitîla bnmbê bî,*
*Çar hêllên te zîndan bî çi dibe!*

*Ger li derva*
*Agirek hatibî dadanê,*
*Pêl bela bûbin li her hêllî,*
*Û ew agir herikandina ber bi Serxwebûnê be!*
*Çar hêllên te zindan bî çi dibe!*

*Ger li derva*
*Li derve dê, zarûkan bi leşker dixewînin,*
*Û zarûk bi girr û hêrs mezin dibin*
*Te serî xwar nekiribe,*
*Li 'polîs' a û 'MIT'ê,*
*Çi kirin mabî li pîya*
*Û di nav îşkence û lêdanan de, bi dijwarî,*
*Bê deng mabî,*
*Bi hêvîyên sip-sor,*
*Ji ronahîya hatinê re bikenî;*
*Çar hêllên te zindan bî çi dibe!*

*ZÎNDAN;*
*Ciyê navça meydana şer be*
*ZÎNDAN;*
*Ne tunebûn be,*
*ZÎNDAN;*
*Berxwedan be,*
*ZÎNDAN;*
*Serhildan be,*
*Ta bîna dawîka emrê xwe li zindanê rakevî çi dibe!*

**NÛHAT**

# DENGEK Jİ ZİNDANÊ!

**Birayê Hêja F....;**

Ji demên dirêj ve ye ku me hev nedîye. Belkî ev xwezî ji tesîrên hevaltîya me bê.

Min çûna te ya Almanya yê li hepsê bihîst. Piştî ku vê yekê hînbûm, bi vê ez gellek êşîyam. Çûna te li min giran hat. Dilê min li hemberî te, bi girr û hêrsên giran kelîya. Lê, ez pê bawerim ku tu nakevî nava rewşeka ku, girr û hêrs jê bê kişandinê. Nabî mirovê rewşeka wilo. Hin kes di derheqê te de tiştnan ji mi ra gotin pê de, heyfa min li hêrsbûna pûç hat. Bi rastî min çûna te ya wê derê bi awayekî di bihîstibû, lomanê li serê sekinîm. Neha ev keys heye ku, rewşa me neguhure, edresa te li cem min heye û emê nerînên hev û dû baştir hîn bibin.

Bira tu dizanî hevaltî û têkilîa me li ser bingehên hewqas bi hêz avabûne ku di tu hoyan de bi tu destikan nayên qetandin. Bêşik bawerîya te jî bi vê heye. Tu bivê yekê jî dizanî ku di her doman de piştgirtin û hevkarîyan dosta girîng e. Li ser vê bawerîyê ji te ra dinivisînim.

Di dema me de, nexasim di hoyên welatê me de, jîyaneka rast, mafên jîyaneka mirovî ne li ax û derên biyane; mirov li ser axa welatê xwe bi dest dixe. Ma imkana înkarkirina vê rastîyê heye? Nexasim eve rêya jîyanê. Ez li te bawerim ku bir û bawerîya te jî ev e.

Li ber çavên min ew bûyî ku, mîna pellê darê, ji bahoz û bablîsokên dijwar nedihatî hilweşandinê. Lê, min bawernedikir, tê ji hejeka hêsan biweşîyayî.

Di vê nameyê de hemû nêrîn û daxwazên xwe nikarim binime zman. Lê, dixwazim ku vê yekê bêjim: jîyaneka betal nebuhurînî, lê cihê te ne ewder bû... Dibîya ku tu li ew derên ku cihên te ne, lê bûnayî.

Birayê min, ger li rewşa min tu pirs bikî, welew li hundirbim jî, dîsa ez başim. Ji du salan zêdetire ku di hundir da me. Lê, hê ji mahkema min bi tu mahkemên rêxistinî ve nehatîye girêdanê. Û li mahkemên eskerî yê didome. Bi biryarê bidarvekirinê; di mahkema 25.12.1980 de. cezayên 42 salan dane. Dosya min li qada biryarkara ye. Ji bo ku biryar bê rakirinê, ji nûh ve mahkeme dibin. Bi gumana min wê dîsa vî cezayî bidin. Dîsan, ji ber berxwedanên girtîxanê 8 salên di ceza dane. Ev pênç mehên ku li hepsa.....'ê dimînim. Di derheqê min de li mahkema eskerî ya cezayên giran, mahkemeka nûh vekirin e. Ew jî ji ber karbûna revê ye. Bi gumana min, an ewê cezakî hindik bidin, an ji ezê jê beraat bibim. Tam li ber gihîştina azadîyê, ku tam min gavên xwe yê dawîyê ber bi rizgarbûnê ve diavêt, xwesiparekî dilreş gilîyê min kir, hatim girtinê. Ez bi vê gellek êşîyam. Lê, bere-bere tê me ser xwe.



Hevalo! Tu zanî ku jiyan şereki ye. Jiyana bê şer û ceng pûç û betal e. Ger şerê me li derva berdewam dibe –bêşik didome– wê hingê em dijin.

Bi van nivîsên namê, amanca min, ne ewe ku li te şîretan bikim. Dibe em, hev nebinin. Lê, rastîyêk heye ku emê bigihîjin serfirazîyê.

Tu dizanî ku; pûçbûn û nepûçbûna civakan, hebûn û tunebûna rihê jiyandomandina civakan di nav şeran de eşkere dibe. Wê civaka me jî di nav şerên wiha de bi kemile. Û ewê şervanên ronahîyê biafirin. Ro bi ro pêlên agirê şoreşê li derdorên welata dikemile. Kole serên xwe radikin, jêrdest şîyar dibin, dest davêjin çekan, sazûmanên hejoke, jîyana rûreş, ewê ji seran ta neynûkan bêne guhartinê. Dinyaka nûh, dinyaka geş û ronahî ewê bê afirandinê.

Lê çineka weke goşt û neynûkan li hev kelîya be, ji me ra divê. Ku ta dawîyê biryarvan be. Ji me ra ne berxên şir, sistok û nermoke divên. Ewên dema şer li sitûyên wan dibe ber û nabêjin "**marê ku têkilîyê min nabe, bila sedsal bijî**" û ji şer narevin, ji me ra divên. Ne ewên ji ber şer direvin, mîna kêzên serşoyan qulên ku were ber wana serê xwe bixinê. Ji me ra yên ku bi hemû hêza xwe. lêdidin, bi derbên xwe hilweşandinan tinin berçavan, çavtirsiyê tu tiştan nînbe. ew divên.

Ji mirovan re tu tişt ji jîyanê bi rûmetir nîne. Lewra, mirov carekî tê dinê. Ji her mirovî re ev yek, rêya hebûnê ye; bê êşandina rewş û gemarên jiyana berê, jiyanê li ser rêya rizgarîyê karbîne û vê jiyana aza û bi



rûmet ta mirinê bidomine. Dibi ku mirov bi vî awahî biji. Û dibi ku em bê rawestandin û bê betlahî, di hemû jiyanan de taybetên pak biafirînin.

Hevalo! ew cihên ku dibi em lê bin, ew in cihên me û jiyana me ew derin. Sekna wê derê ta dawiyê ez ji lê bawerim ku ne mimkin e. Daxwaz û baweriya min e ku tu û kesên kari bi xwe ra bînî - di demekî nêz de winê vegerin cihê xwe. Ger bê zanîna rewşa jiyana te, min dest bi şiret û kifşkirina kiribe, vê yekê û li vê kêmasiya min bibihure. Ne hewceye ku dirêj bêjim. Ger bersiva nameya min birêkî, ezê pê kêfxweş bibim.

Rewşên jiyana hepsê ji binî ve nebaşin. Îşkence û eziyetên giran hene. Ji bo serxwarkirinê çi destik hebin, hemû bikar tînin. Li hemberê vê yekê, berxwedanên mezin pêk tên. Li berxwedanên hepsê, li ser gellek destikan pêk tên. Mîna agirdadanê, rojiya mirinê, serhildan û dijberitî hwd.. Lê, piranê berxwedana bi rojiya mirinê pêk tên. Heta neha birçîbûna dirêj li hepsa Diyarbekir 48 roj berdewam bûye. Di vê berxwedanê de, 4 şoreşger şehîd ketin. Li girtîxana Elezîz'ê bi sedan berxwedanên birçîbûnê çêbûn. Roj, bê işkence nabihurin. Û berxwedana birçîbûnê roja 18. didomine.

Zindan bûne cihên tekoşînê. Berxwedanên bê emsal li zindanan pêk tên. Hewqas ku pêlên berxwedanan kesên xwesipar ji girtin e. Ji nûh va diafirin û dikevin nav sefê berxwedanên. Berxwedan dibe serfirazî, lê xwesiparî dibe xayintî yê.

Kesên ji berê ve hatin e girtinê, bûne derdevkê karbidestên hepsê, têkiliyê tu tişteki nabin. Ji ber vê rewşê, li hember zilm û işkencên dijmin singvegirtin, dijwartir dibe.

Bi hemû daxwaz û hêvîyan, silavên dilgerm li te dikim.

*Heey stêra sor!*
*Li ber bangê*
*Dema nobetê didî rojê,*
*Jê ra bêje,*
*Dîroka vî şerî, bila kûr binivisîne.*
*Ku em;*
*Ji zû de pêşberê silahbûne,*
*Li kûrî û dawîyên kozikan,*
*Mîna lûla sip-sor.*
*Û weke xortê bîst salî ciwan,*
*Serê me rast, dilê me bi hêz.*
*Wiha em hînbûne.*
*Û emê wiha bidominin jiyanê.*
*Rê dirêj...*
*Rê dijwar.*
*Şervan birçî, şervan bê xew û betlandî.*
*Ne sebrê nasir girêda, û*
*Ne ji qelş çêbûn di singê de.*
*Bi adana tekoşîna xwe, em hînê jiyanê bûn.*
*Serê me rast û*
*dilê me bi hêz.*
*Me biryar daye ji domandina vî şerî re*
*Ta ku sinbil bi azadî şîn bên...*
*Hilgirtina evîna te,*
*Mîna canê her bin, li ber mirinê.*
*Hilgirtina evîna te,*
*Mîna demika di jiyanê de carek bi dest dibe û ji bir naçe.*
*Hilgirtina evîniya te,*
*Mîna hilmeka piştî işkence û lêdanê,*
*dikşînim ji çixara xwe.*
*Bi hilgirtina evîna te,*
*Mîna vegeriyabim qeda û belayê wê.*
*Evîna min; hesreta min; canê min...*
*Welatê min Kurdistan...!*

**F.G.**

# Lİ DİJÎ DİJMİN HÊRS Û HEMBERÎYA GEL KÛR DİBE!

Di ser destgirtina sazûmana karbidestê faşista qolonyalist de 3 salên ku derbas dibin. Bi amanca tunekirina gelê Kurdistan'ê ev 3 salin ku li ser gelê me zilm û zorbazî yên melisandinê sist nabin. Nexasim dijwartir dibin. Zerp û zorbazîyên qolonyalista gihaye qeysa pêkanînên nemirovî. Hewqasan ku; zerp û zilma hêzên karbidest çiqas bêne gotinê, çiqas bêne zman, dîsanê tegihîştina dijwarîya zerp û îşkencên giran ewê kêm bimîne. Bi her awahî têgihîştina wan çênabe.

Bi rastî zilm û zerpa ku li ser gelê me têne meşandinê bi rêyên wilo pêk tên ku yên mirov be, li van pêkanînên faşista diheyire û lê kûr diponije. Ji bo ku li Kurdistan'ê mirov, jiyaneka mirovî bidomîne ji rêya tekoşînê pêştir tu rê neman e.



Lewra, işkence û darê zerpê, operasyon û girtin her roj zêde dibin û pêkanîn têne jidandinê. Girtina serê kuça, ziqaq û taxan, seravêtina gund û mala bûne parekî jîyana gelê me. Jiyan bê van nabihure. Bere-bere ew tirs û şikên dema berê, ber bi hêrs û hemberîyê va cih diguhurin. Tirs û şikên giran neman e. Her kesên Kurdistan'ê, hînê van yekan bûye; wê kingê û wê bi çi awahî operasyona çêkin û di dawîya operasyona de wê çibibe. Kedkarên Kurdistan'ê bi jîyana xwe hînê van bûne. Ji ber vê rewşê, xwe ji berê ve hazirê van yekan dikin.

Hêzên qolonyalista di nava gelê Kurdistan'ê de hemû destik û leystikên xwe bikar tînin. Nexasim, destik û leystikên xwe bi giranî li ser şer û berberîyên eşira bikar tînin. Ya rastî van yekan kêrî xwe tînin. Ew pozberîyên ku li ber yekbûnî û hevkarîya gel radiwestin, û gelê me bi hev û du dide şikandinê, ji qolonyalîsta Tirk, fen û leystikên dijmin re dibine destik. Ji bo vê yekê ji, dijmin, berberîya eşîra ji nùh ve dadide. Berberîyên eşîran tesîrên giran li civakê dikin. Heta ku dem-bidem berberîya eşîra dibine sedemê şerên giran. Li hêllên ku, bingehên berberîya eşîra rabûye, an jî li derên ku jar maye, li van deran hêzên qolonyalista dijberîyên nûh derdikin. Û leystik û fenên nûh dixebitînin. Nexasim piştî hilbijartina "anayasa"yê bi firehî pêkanînên xwe didomînin. Karbidestên faşîst li ser giliyên berdevkên xwe, pozberîyên nava gel li hev tûj dikin. Amanca wana vî alî eve ku, pozberîyên nava gel herdem germ bihêlin. Ji bo vê yekê jî hemû berdevkên xwe, leystik û fenên xwe dixebitînin. Mîna hêrsa ji netîca hilbijartinê sitendine bi hemû pêkanînên dijwar hêrsa xwe vedireşîne ser gelê me. Ji ber dema hilbijartinê, netîca ji Kurdistan'ê hêvî dikirin bi destê wan neket, hejmareka pêwîst ray li "anayasa"yê neanî, hêzên qolonyalîst bi vê harbûnê mîna ji nûh ve êrişî ser gelê me bike, destikên hovîtîyê ji nûh ve xebitand.

Ew kesên ku di hilbijartinê de berpirsîyarî li gundan sitendine, muxtar û serekên eşîran yeko-yeko dikşînin ifada. Û ji wan pirsan dikin, ku kesên ray li "anayasa"yê neanîne nasbikin kine. Ji ber vê yekê gotin û işkencên giran li muxtar û serekên eşîran dikin. Ger ev kes ji amanca wan re nebin destik, wan ji cîh û wezîfên wan digrin. Lê, pêkanînên faşista bi van yekan ji nasekine. Bi giliyên derewîn girseyên gel, li hev û dû dikine dijmin. Kesên li hember van berberîya dertên an qima wan nayê, leystik û amancên li ser şerên eşîran têne meşandinê, pê dizanin ji hêllên gundîtî, malên xwe bar dikin bajêra, an jî diçin metrepolê. Vê rêya felatîyê dibînin.

Metodên ji destpêkê ve ji bo civandina çekan bikar dianin, bi pêkanînên nû ev têne domandinê. Muxtar û berdevkên dewletê li hêllan navê gundîya dinivisînin û van nava dibin didine qereqolê. Esker davên ser van gunda û kesê ku navê wan nivisandî be, ji wana çek û peran dixwazin. Yên ku di destê wan de tune be, lêdanên giran li wan dikin û wiha gefan li wan dixwin; "heke wun nikaribin çeka bistînin, jinê xwe bifroşin, bi perê wan çekan bistînin bidine me..." Bi çi awahî dibe-bila bibe ille wê çeka ji gundîyan bistînin. Nexasim ew derdorên li wana bingehên welathizî bi hêz e, kêrî şoreşgeran tên, wan xwedî dikin, bi dijwarî li ser van hêllan disekinin.

Pirsgirêkeka giran jî buhatî û zem e. Lewra her roj zêde dibin. Ji ber buhabûn û zemê, rewşa jîyan û debarê kêm dibe. Mîna gel hatibe ber qeysa sefîlî û belengazîyê, ta kirta gerokîyê. Heke karkerî û hemalî bi dest bikeve, ew ji buhayê wî ji 500î zêdetir nîne. Di vê rewşê de welew kîloya şekir –ku 150 ye– tenê mirov bide hişê xwe, têgihîştina vê gellek hêsan dibe, ku li welatê me domandina jîyanê di vî hoyî de gellek dijwar e. Ji ber vê rewşa dijwar, ji demên berê zêdetir ji hêllên gundan gundînê kedkar, koçberî bajêran dibin. Her roj zêdetir rêya felatbûnê di tekoşîn û rêya şoreşê de dibînin. Ji sedemê ku ev têgihîştin fireh dibe ku hêza qolonyalîsta vê li ber çavên xwe dibînin, ji hêllekî, zerp û girtin û işkencên giran didomînin, ji alîkî ve ji bo ku ev hêza civandî, ber bi rêya şoreşê de nekemile, mîna darê zerpê, olîtî di xebitînin. Camîya kirine

meydana weşandina îdîolojîya faşîstî. Li camîya, piştî waz'èn olî; mêjîyên mirovan bi jarîya îdîolojîya faşîst û bi kemalîzmê dadigirin. Fermane ku, van li camîyan pêk bînin. Meleyên ku van bi cîh naynin, ji alîyê muxtaran ve têne kifşkirinê, wan digrin û işkencê giran li wan dikin.

Nexasim betalî gihaye qeysa bilindî. Ji ber seknandina karên avayîya di nav civakê de bi milyona betal ma ne. Çewa bêkarî bi xwe ra birçîbûnê tîne, li nav civakê kefte-leftên giran çê dibe; dizî, dînbûn û xwe bidarvekirin hwd. ji jîyana civakê kêm nabin. Welew ji bo kar li hêllekî daxûyanek dîyar bûbe, sedhezar kes serî lê didin, ew jî bi vê hêvîyê "**te dî ku qeder li ruyê me kenî ya!**" Demên berê ku fîşên bê bûha, dihatin e sitendinê, neha bûhayê wan 500 e. Ger ku bi dest bikevin...! Sitendina karkeran bi imtîhana pêk tînin. Pirsên imtîhanê hemû li ser îdîolojiya faşîzmê ne. Yanî rêya gihîştina kar, hebandina vê îdîolojîyê ye. Dan û sitendina bertîlê bûye usûla wan. Lewra; ji dîrokê ve qolonyalista Tirk hebûna xwe li ser talanbazîyê meşandîye û hê didomî ne. Hebûna xwe li vê digre. Vê taybeta xwe ya dîrokî bê kêmasî dixebitî ne. Li hemû qadên dewleta faşîst ji dergevan û eskeran, ji qerdîyan û pêxwasê ajana ta generala ji bertîlê pay distînin. Bi gilî û fenê derewîn kesan digrin û ji nas û malîyên wan bertîlên mezin distînin. Li gellek hêllan bertîl sitendinê anîne wê qeysê ku mîna miaş, her meh distînin. Gundîyên van hêlla di nav-bera xwe da pere kom dikin û mîna curmê didine wan. Nexasim li ser hêllên girtîyan vê eşkere didomînin. Li hemû hepsan qawîşan ji hev vediqetînin. Û navan li wan dikin qawîşa hêsan, qawîşa zerp û işkencê û malîyên girtîyan bi vê dihisînin. Bi vî awahî, nas û malîyên girtîyan dişêlînin.

Cunta faşîst e qolonyalista Tirk welew pêkanînên hovîtî û zilm û zorbazîyên nemirovî li ser gelê me meşandibe, rêberên bi rûmet kuştî be ji dîsa li hêllên girtîxana di nav işkencên nedîtî de liberxwedanên şoreşgerî bi biryarî tên domandinê. Şervanên rizgarîyê, êsîrên şerê serxwebûnê mîna hestî û çermên hişk mabin jî ala şoreşê naxinin erdê. Welew ji işkencên giran seqet mabin, bi nexweşînên giran ketibin jî ev rastîyeka bi nişan e. Têgihîştina, hovîtîyên li girtîxana pêk tên ne mumkin e kesên ku ji demên dirêj va dibin van eziyet û işkencên giran de mane, piştî berdanê jî ji bin tesîra pêkanînên hovîtî dernayên. Mîna robota, li ser hev marşê "Tirk im, doxrûyûm", "dê ya min Tirk, bav ê min Tirk, ez Tirk, kurê Tirka me..." hwd. dibêjin. Ev yek bi xwe dibe nişana hovîtî û pêkanînên girtîxana.

Bêşik, hêleka ku karbidestên faşîst li serê disekine ew jî, xort û xwendevanên Kurdistan'ê ne. Hilm û giranîya xwe li ser vê hêllê bikar tînin. Lewra, hêzên qolonyalîst, bi têgihîştina rola xort û xwendevanên Kurdistan'ê di tekoşîna şoreşê de ku dileyîzin, bi amanca melisandin û pejrandina hêza xortên Kurdistan'ê, hemû destikên xwe bikar tîne. Amanc dike ku wan li nav civakê pûç û bêteşe bihêle. Ji bo vê yekê jî, li hêllê gundan ta taxê bajêran cîhê kêf û leystika topê vedike. Ji alîyek jî; di bin destên faşîst û polîsan de vexwarina araqê, qumar û tolazîyê bela dike.

Ji destpêka xwendinê ta dibîstanên din, hiş û mêjûyên zaroyan û xortan, bi jarîya îdîolojîya faşîzmê dide şûştinê. Di bin destê seresker û muftîyan de, şoreşgerî û "Kurtçîtî" nizm dixînin, bi derew û rûreşî didine naskirinê. Hemû pirtûkên dibistanê bi îdîolojî û peznê faşîzmê dagirtî ne. Yên ku dijberîyên piçûk jî nîşan didin, wan ji dibîstanê davêjin û dixine hepsê. Bi imtîhanên ku danîne ber xortên kedkaran, îmkana xwendina dibîstanên bilind ji ber wan rakirin e. Piranîya xort û xwendevanan sedemê vê yekê di nav civakê de betal dimînin. Bêşik, di hemû pêkanînên xwe de amanc digrin ku xortên Kurdistan'ê ji pirsgirêkan dûr bimînin; xwe nasnekin û bêteşe biafirin.

Pêkanîneka hêzên qolonyalîst jî ev e: ji ber ku li hêllên gundîtîyên dibistan lê tune ne, eskerên qolonyalîsta Tirk davêjin ser gundan û çiqas zaroyên 5-12 salî hebin hemû ji derdorên gunda dicivînin û wan dibin davêjin êtimxana ku piranîya zarokan ji hawîrdorên gunda karê malê û şivanîyê dikin. Ev pêkanîna hêza qolonyalîstan dişuhube pêkanînên demê berê ya "ocaxên Yenî Çerî" ya. Di nava gel de dijberîya vê pêkanînê bela dibe. Ji bo ku zarokên xwe bi parêzin, gundî, dest ji gundê xwe berdidin û terkederên hêllên çîya û şikeftan dibin.

Li hêllên gundîtîyên ku hemû debarên gundîya li ser daristanê ye, ji darê ziwa ta civandina qirşika li wan qedexe kirin e. A rastî wan ji destikên debarê birî ne. Ji ber vê yekê, herdem li dû gundîya digerin. Dema gundî têne girtinê, işkencê giran li wan dikin. Ker û qantira wan difiroşin, kurtanê ker û qantirê dişewitînin. Bi kurtî; li ser van gundîya çi ji destê wan tê bikar tînin. Di van pêkanînan de bûyera dawî li hêlla Sêrt'ê çê dibe. Gundîyê ku ji bo lawê xwe yê nexweş derman bistîne, dema bi barê êzinga diçe bajêr, wî digrin û dest davêjin ser malê wî. Piştî eziyet û işkencên giran 3 meh ceza didinê. Lê, ji ber tenê ev rêya debara gundîya ye, gundî hemû zerp û dijwarîya didine ber çavên xwe, ji bo birçî nemînin vê yekê di meşînin. Em dev ji destxistina derman berdin, gundîyê li ser nexweşîna xwe digere, ji xeynî buhayê rê –ku heroj zem tê ser benzînê – dema ku gavên xwe davêje nexweşxanê, pêşî 500î dide. Bi vê şêlandinê welew çare ji nexweşîna xwe ra bibîne jî, perê derman di destên wî de namîne û bi berîka vala, bê mecal vedigere malê.

Hêza qolonyalîst, li ser hêllên ku Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan'ê bi geşî hatî be hebandinê û lê bingeh girtî be, li ser hêlla Adiyaman'ê, Batman û Mêrdîn'ê hwd. bi giranî diseki ne. Li hêlla Batman'ê û Ceylanpinar'ê 300 Afganî bi cîh kirin e. Ji wan, li hemberê tekoşîna rizgarîya netewa refa ajan, hêzên milis saz dikin. Mîna li roava Vietnam'ê gundîyan bi eşîrî, ehl û cîrantî û hunermendî ji hev par vekirin e.

Li ser van yeka tevgersazîya wan pêk tînin. Hatine kesên biyane, gera hêllê û têkilîyên şoreşgeran bi van derbixin meydanê.

Karbidestên faşîst xwedîyê gellek îmtiyaza ne. Dema diçin qahwê, cîhê xweş kîjan be ew der ji wan re hazir dibe. Li derên aşxana, cîhên bilind ji wan ra ye. Ev rewş bi her awahî berçav dikeve.

Ji sedsalan ve ye ku gelê me li hemberê pêkanînên dijmin sing vegirtî ye û di salên dawî de li ser rêya Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan'ê hebûn û tekoşîna xwe diyar kirî ye. Hemû pêkanînan ji kûrkirina gora sazûmana qolonyalîst pêştir tu fêde nade. Û ewê rojên seraxkirina gore bên... .

# 18 û 19 ê GULANÊ



Hakî KARER



Xelîl ÇAVGUN

Rojên 18 û 19 ê Gulanê di dîrok û berxwedana tekoşîna gelê Kurdistan de, hewqas bi mane, hewqas xwedî taybetên bê emsal in ku; tu dem jibîr nayên kirin. Û ji taybetên xwe tu tiştek wunda nakin. Lewra pêvajoka berxwedana tekoşîna gelê Kurdistan û taybetên tekoşîna demê li xwe nexşandin e.

Ji rêberên, berxwedana Tekoşîna Serxwebûn û Azadîya Kurdistan'ê, rêberê navdar, şervanê enternasyonalîst Haki KARER di 18 ê Gulanê 1977an de, ji hêlla berdevkê qolonyalîsta Tirk, "Sitêrka Sor" ve, hogir Xelîl ÇAVGUN; bi dęstê pêxwasên qolonyalîsta Tirk feodal-kompradoran ve di 19 ê Gulanê 1978an de hatin kuştin.

Ev bûyerên bi mane û giran, hogirên navdar; ji bo têgihiştina dijwarîyên şoreşa Kurdistan'ê, zerp û hovîtiyên qolonyalîsta Tirk û ji bo naskirina xasiyên şoreşgerî, ezm û bawerîya şoreşê kanîyên bê emsal in.

Hogir Haki, ji nav dilê karkerên Tirkîyê derketibû. Û hebûn û jîyana xwe ya rêber, li ser taybetên enternasyonalîstî di oxira Tekoşîna Serxwebûn û Azadîya Kurdistan de danîbû. Hogir Xelîl perek ji dilê kedkarên Kurdistan, jîyaneka bi nîşan e; di tekoşîn û berxwedana serxwebûna Kurdistan'ê de li sefê kedkar û gundîyê Kurdistan, bi taybetên rêberî cih girtî bû. Ew deng û hilma kedkarên Kurdistan bûn. Daxwaz û hêvîya taybetên gel jîyana xwe nexşandibûn.

Bi bawerîya ilmê cîhanê, û amanca şoreşê, bi xebat û tekoşînên xwe, wan ne tenê rûreşî û gerîneka sosyalşovenîzmê, xwesiparî û tengnetewkarê burjuvazîya piçûk, ku li Kurdistan'ê hêlînên serxwarîyê vedigirtin kiras û rûreşîya tewrên hember gel û şoreşê daxistin meydanê. Di nav hemû êriş û hoyên dijwar de taybetên şoreşgerî û şoreşa Kurdistan'ê parastin pêş de birin. Bi xebatên xwe yê bê emsal ji gellek pirsgirêkên şoreşê, civak û netewa Kurdistan'ê re bersîvan anîn.

Ji derbûn û ber kemilandina, Berxwedana Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan ve; li hember tewrê berxwedanê, amanca serxwebûnê, rêberî û partîya hemdemî, tevgersazîya karker û kedkaran û li dijî gel û xwebawerî û parastina taybetên gel û şoreşê qolonyalîsta Tirk, burjuvayê hov; hemû destikên xwe, êriş û hêza xwe ya zerpê, eşkere daxiste meydanê. Êrişên xwe dijwartir kir. Lewra pêvajok bi xwe, di tekoşîna gelê Kurdistan'ê de kemilandin û xemlgirtina şoreşgerî bû û rêya hebandina hebûn û tekoşînê li ser vebûbû, ku tekoşîna vê pêvajoyê;

Li hember amancdanîna tunekirina gelê Kurdistan, li dijî dimin, amanca hebûn û domandina berxwedanê;

Li hember hêza êrişbazîya qolonyalîsta Tirk, li dijî zerp û zorbazîyên nemirovî; pêkanîna berxwedana tekoşîna şoreşgerî û zerpa şoreşê;

Li hember nebawerî, xwesiparî, mafên arizî, jîyanên bê teşe û nemirovî; gel û xwebawerî, dilsoz û biryarvanî, xasîya berxwedanê û mafparêzîya gel û şoreşê;

Û li dijî komik û rêxistinên lihevhatî, amancên tev-lihev, bingehê rêxistina şoreşê, rêxistina mina pola hevkar û hevgirtî, partîya şoreşê û amanca serxwebûnê bi zelalî bi jîyan û tekoşînên bê emsal kemilandin. Li ser oxira taybetên bê emsal di rêya şoreşa Kurdistan de şehîd bûn. Pêşxistin û parastina van taybetên serfirazîyê bûye karê jîyana me hemûyan. Wan rê kir rêya şoreşê û bê dudilî li ser vê rêya bi rûmet meşîyan. Rêya me hêsan û bêtirs kirin, bi jîyan û xwîna xwe ya pak.

Ew di dilê karkerên gelê me û Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan de dijîn!

# NEWROZ BÛ PERGALÊ JÎYANÊ!



Di bin nîrê cunta faşîsta qolonyalîstî de, 3 salên ku jîyaneka dijwar tê domandinê, qolonyalîstên Tirk; hemû hunerên zorbazîyê, pêkanînên hovîtîyê, li ser gelê me yê rizgarîxwaz pêk anî.

Bi sedan rizgarxwazên welatê me, dilsozên gelê me dagirtî ye girtîxanên nemirovî, bi dehan şoreşger û welathizên, di dilê gelê me de cih vegirtine, li çîyan, li gundan, li bajêran û nexasim ji li girtîxanên nemirovî bi berik û işkencan, bi şewitandin û qetlîam hovîtî bejna wan ji nav me rakir. Lê qolonyalîsta Tirk, burjuvayê hov; agir û ezm'ê Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan, berxwedana şoreşgerî û ezm'ê serhildan û hemberîya gelê me ne şikand. Gelê me bê deng nema. Ezm'ê berxwedanê robiro geştir bû. Ber bi bingehgirtinê va çû. Çirîskên pêşveçûna berxwedana, li hawîrdorên Kurdistan'ê, nexasim li girtîxana Diyarbekir pêlên agir vêxistin. Pêllên agirê Berxwedana Serxwebûna Kurdistan'ê hilm û gulma xwe li ser welat û gelê me nîşan da. Mîna berxwedanên girtîxanê. Weke zereqa rojê şewq li hawîrdorên Kurdistan'ê da be; Kurdistan ji nûh ve ronahî bû. Taybet û serpêhatinên gel, geş bûn. Bi hemdêmê ra xeml girtin.

Welew ku dîrok û bûyerên Newroz'ê bêne biranînê, wê têgihîştina Newroz û Kawa'yê hemden zelal bibe. Lewra, di ber hoyên koletî de; bi berxwedanên nîşane, bi serhildanên dijwar, bi şerê dirêj li hemberê koledarê demê, bi rêberî û şervanîya gelê me NEWROZ afirî ye. Di hoyê bê fesal, li ber dijmineki dijwar de, gelê Kurdistan; li ber hebûn û tunebûnê, di şerekî dem dirêj de bi tekoşîn û berxwedanên mezin rêya hebûna xwe ya gihîştina demê vekirî ye. Di vê oxirê de gellek xweşmêra daye. Rêya pêşketina gelan bi tekoşîn û berxwedanên bê hempa vekirî ye. Hoyê tarîtîyê, nîrê koledarî ji hev par vekirî ye.

Bê guman, bûyera ku di dîrokê de hatîye afirandinê, ji gelê me ra gellek pêwîst e. Lewra vê pêvajoka ku bi navê NEWROZ û KAWA ta rojên me têne biranîn, gellek taybetên bi rûmet didine danezandinê. Xweşî, dilpakî, nûbûn, tekoşîn, serhildan, serxwebûn û azadîxwaz, ezm'ê hebûn û biryarvanî hwd. hemû ji xeml û rêdanên bûyerê tên derxistin. Berî her tiştî, rêya hebandina hebûnê, gihîştina demê, li dijî dijmin û rêya tunebûnê, ezm'ê hebûn û tekoşîna gel bi zelalî derdike meydanê. Bi rastî taybet û serfirazîyên Newroz'ê di hemû hoyan de bikar tên. Jiyana rast û mirovî li ser van digihîje rastî yê. Nexasim, dijberîya bindestî û xwe bawerî dide zanînê.

Bi van taybetên esasî di dîrok û hoyên guhartî de, Newroz û Kawa yê hemdem, bi derbûna tekoşîna Serxwebûna Kurdistan û bi tekoşîn û berxwedanê tevgersazîya karkerên Kurdistan û rêberên bê emsal Newroz gihîşte rastîya xwe. Taybetên Newroz'ê di hiş û mêjûyên gelê me de hêlîn vegirtin.

Lewra, di sedsala XXan de, Dehaqên nûh bi zerp û zorbazîyên dijwar, pêkanînên nemirovî û bi êrişên tunekirinê dixwazîn ku gelê me ji pêvajoka hemdemî, ji pêvajoya dîroka hemdem veqetînin bi melisînin, ji gelên cîhanê dûr bixin û ji rûkên erdê vemirînin.

Hoyên jîyana gelê me bi eşkere dide zanîn ku; dijminên gelê me, mîna dehaqên kevnare har û dijwar in.

Lê mîna dîroka gelê me, û yên gelên cîhanê dane zanandin; dijminên gelan hêzê koledar, çiqas zorbaz bin, çiqas hovber bin, welew ku hebûna xwe li ser zerpa eskerî ji bimeşînin; gelên jêrdest ji rêya rizgarî û serxwebûnê gavan navên paş û di vê oxirê de lawên xwe yê bi rûmet pêşkêşî dergaha azadîyê dikin. Dîroka xwe ya azadîyê bi xwînê dinivisînin.

Di sala 1982an 21 ê Adarê li girtîxana Diyarbekir bûyera kû pêkhat, şehîdbûna rêberê tekoşîna gelê Kurdistan, endamê KM ya PKK Mazlum DOĞAN bi hemû pergalên xwe, bi berxwedanên bê emsal ev yek bixwe bû ku bi hebûna xwe di girtîxana hoyên nemirovî de di nav hovîtî û işkencên dijwar de, taybetên tekoşîna gel û partîyê, xasîya şoreşgerî û rêberîya gel û taybetên Newroz û Kawa yê nûdem cikrim parast û pêtîyê Newrozê di nav têlên pêçayî, derîyên hesin, û dîwarên bi rêz de pêxist. Li ser kotîna bejna xwe berxwedan û taybetên tekoşîna gelê Kurdistan'ê gihan de perê asîman. Kanîya pezn û serfirazîya Newroz û Kawa, li xwe civand. Bi bîr û bawerîya taybetên şoreşgerî, welathizî, û taybet û serfirazîyên Newroz û Kawa yê hemdem li Stockholm'ê di şeva pîrozîya Newroz'ê de, bi proxram, folklor û helbestên şoreşgerî û gelêrî, girsa koçberê Kurdistan şehîd û taybetên welathizî û Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan'ê heband. Bi dilpakî û geşî taybet û hebûna xwe jîya.

***

Koma Berxwedan, bi hemû xeml û leystikên gelêrî, bala hemû guhdarvanan bi giranî kişand. Ozan Şivan, Gulistan, Mizgin û Çiya bi hunerên şoreşgerî geşîya şevê nexşandin. Tiyatroya ku hate pêşkêşkirin, ku jîyana gelê me, berxwedanên hepsê û hovîtîya qolonyalîstan anî ber çavan, bala hemû guhdaran li xwe girt.

**WÊ HER BİJÎ NEWROZ!**
**BİJÎ TEKOŞÎNA RİZGARÎYA GELÊ KURDİSTAN!**
**ŞEHÎDÊN KURDİSTAN BÊ MİRİNİN!**

# TÎYATRO

## (Diyarbekir...)

Mîna bajarê mirî, mîna çiyayê ji mij û dûmanê li ber binçikandinê, bi xemla roja nû, bi hêrs û heybetek giran, ji nav rêşiya beyanê, ewr û şina şevê radibe... Mîna devê kewarê bi xumine... Erd'a reş, bejîya gewr, kevirên reş, benda rêsayî... burcên sale-wextan, xemgîn û tazî...! Bere-bere ji der-doran xûyan dibe, kanîya bê pêl û bêl. Ji çol û beyanan, xaçerê û caddan ber pê diherikin! Ma ew çiye? çi bûye ji Diclê? çima pişta xwe dayê? Berê xwe daye ku?!

Ji fixan û pêlên kul û birînan, ji hawar û girrî çav lê sor-bûye... Ji pişta geroka welatê rêsayî hilm û gulm radibe... Bi barên qurnê salan, diherike, bi gazin û qêrîn.. Ge xwe radixe ber, ge pêlên xedar radike li hember. Ge dixwaze, wê dixe nav himbêza xwe, ge ji sist û nerm dike gera xwe. Mîna dilketîyê wê be. Bi seyran û dîlan, ge ji, lê vedigere bi girr û fixan; "damara dilê Kurdistan'ê; kanîya êş û xem'a. Dilê bi birîn.. haa.. Diyarbek'ra dil bixwîn.

Wê navê te bijî, ta ku dinya hebe. Binêre.. tu bi hemû xeml û rêdanên xwe bi rûmet û heybetên xwe yê qurna salan, dîroka xwe ya hemdemî dijî. Êsîrî û belengazî, qirkirin û qetliamên bi destên qolonyalîstan, ji qurnên salan ve pêkhatine, li ser nav û hebûnan te, hesabê wan yek-biyek tê pirsinê. Bi bernava Kurdistan'ê tu, ji me ra bûyî kanîya pezn û serfirazîyê. Nayê ji bîrkirin navê te Diyarbekir...

Diyarbekir... Diyarbekir navê te xweşe, şana te ji berxwedanên zindana gihaye bandevî. Bi xeml û rêdana xwe dibî tirsa dilê dijmin. Ji te qewet distînin nas û dost Diyarbekir...! Emê bijîn û bi hevre bibînin berxwedaran û emê bi çavên xwe bibînin xwesîparan...

Û emê bi hevra bibînin çewan li hember hemû êş û işkencan çewan sîng tê vegirtin, çewa rûmetên Partîyê têne parastin, û çewan agirê serxwebûnê, pêllên berxwedana ji ser destan ta dilan tê gerandin, û emê bibînin, çewa kozê agirê berxwedanê naxin erd'ê.

Diyarbekir... li ber zeraqa rojê, tîrêjên ronahîyê emê li ser bircên bendewar, ala azadîyê, ala sip-sor biçikînin.

### SAHNE I

Qawişeka tevli-hev derketiye berhewayê. Zangerî dikin. Hejmara girtîyê qawişê gellek e. Di destên qerdiyan û lêdankara de darên lêdanê hene. Her yek mina rewtelek e. Girtîyek li qunc di nav xwînê de dirêj kirîye. Bi vekirina perdê, girtî hemû dikevin weziyeta rêz'ê... Ji bazdan û lêdanan hemû perişan xuyane...

Qerdiyan- Na..! Na..! Nabe! Nebû.. pûştno! Disa.. disa. Zû rêz be! Milên xwe berdin; rihet! Hazır! Li pêş binêr. Bi gavên normal bi mê! Veger milê rast'ê! Bi mêş!

Ûla, ûla pêzeweng. Lawê qeşmera.. Min dapirê K.... Yo.. milê xwe bi hejine! Çokê xwe bikşine! Pûşto! Wilo neşkine! Ji ter dibem, xwar neke... tolazê kurê tolaza! Disa vegerin rast'ê.. pêş de!

**Qerdîyan bazda û bi lepên xwe wî hejand, daxiste erd'ê û bi kulm û sîman kete ser...**

Rabe.. zû.. zû.. lan.. Ula ibne xwe nehejine ha! Vegerin rast'ê... Pêş ve ... rast bi meşin haydê! wê marşa "**Ez Tirkim, babê min Tirk**" bi banga meşinê bê jimartin. Hemû bi hevre bi gav avêtineki peyvokek dibêjin; **ez Tirk kurê Tirk'im**, li ser hev sê car tê gotin û qerdiyan pêşkêşi wan dike;

**– Wetan, te re canê min fida, bijmêr!**

Hemû mina qerdiyan sê car li ser-hev marşê dibên; we-tan te-re ca-nê min fi-da.

Qerdiyan- Ûla pûştno, ma wun mirine.

Bi gef û sewta qerdiyan deng hê bilintir dibe, ji nişka va li yê seri dike borin;

– Çoka bikşi, wuha bi hejine. Hi-ha wusa ha... Puştê min, ling xistiye d... û x...an!

– Haydê! wê marş'a "**Tirk'ê her mezin Atatirk**" wê bê jimartinê, dest pê ke!

**Hemû dîsa li ser-hev, bi dengekî bilind marşê dibên;**

"Tir-kê her me-zin a-ta-tirk".

**Qerdîyan bazdide pêş û emrê davîyê wê bide;**

– Li milê rast'ê veger, bi meşa normal pêşve..! ta tên qada meydanê.

– Qawiş bise! Li min veger! Wezyeta lêdanê bisti!

Hemû bi hevre destên xwe dirêji pêş dikin.

Hemû- Emr'ke qomitanê min.

**Qerdîyan dest bi lêdanê dike. Di destpêkirina lêdanê de, her girtî kunya xwe dibêje.**

**– Ahmet Bilûr,**

**– Edîyeman,**

**– Emr'ke qomitanê min.**

Qerdîyan- Destê xwe bide ser hev. Bi siparî, bi siparî.

**Bi emrê qerdîyan, girtî destê çepê, datîne ser yê rast'ê. Û li berê digre. Ji bo derb cigê xwe baş bigre..**

**– Hihh, ha..., haj te.. yek-dudu-sisê... .**

Girtî- Ax, axxx, ay dayê.... uff...aax!

Qerdiyan- Nekşin.. nekşine destên xwe. Pûşt.. hih... hih dikşinî ne, hih...

**Qerdiyan lê dide ta li erd'ê wî digevizine. Û hêdî li yê di vedigere û diçe ber.**

Girtî- Mistefa Qaya.

– Mûş.

– Emir'ke qomitanê min!

Qerdiyan- Darê xwe çend caran li destê wî dihejine û bi hijd lê dide.

Girtî- Ax, ûûxxx bavo! Ûff ûyii...

Girtî- Mehmet Yilmazer.

– Batman.

– Emr'ke qomitanê min!

Qerdiyan- Çavên xwe negre!! Ûla pûşt... ka tê bibînî, Hah... haj te, haj te.. ha, ha...!

**Xwîn û ofîna girtîye. Bi ûfe-ûf li destên xwe yê li dest û tilîyê xwe yên bi xwîn mêze dike. Di nav axîn û ûfînê de sitêr ji çavên wî dibarin. Îske-isk pê dikeve.**

Girti- Yilmaz Yucetirk.
- Eleziz.
- Emr'ke qomitanê min.

Qerdiyan-
**Lê hêrs dibe. Serê xwe jê re dihejîne. Dar di zikê wî de radike. Tu dike rûyê wî û darê destê xwe dijdîne.**
- Ûla pûşt! Destên xwe deyne ser-hev, dirêjke, ha hah... ha yek, ha didu, ha sisê, ha..., hih... maqey nexweşbû? Ne wilo?



**Xweydana eniya xwe bi pişta destê xwe paqij dike. Firnikên pozê wî mina gewriya beqê radibin dadikevin. Darê destê xwe davê û bi kulma diçe ser. Wî li erd'ê pîj dike. Li girtîya difetile û emir dide.**
- Xwe li erd'ê dirêjkin! bi kişkişinin.. Ûla qewad, xwe baş nakişkişinî. Ji dar têr nebûyê ne..! Ha ji te ra hah, hihh bisin! Bila pişta we li erd'ê bizeliqe. Xwe bikişkişinin hêji, hêji, bi wiyali va, ha, hahh.. bi aliyê di va. Hêji bi mesilin, ha hahh, bizeliqe, bizeliqe. Çê-çibûye ji pişta te?! Na pûşt ew xweydana sore, ne xwine, serê we ji wê bişkê; pişta we ya bi birin wê kurmi ji bibe; kinc ji wê nemîne li ser we. Lê wunê vê ji bidominin. Westandin-mestandinê nizanim, xwîn û birin ser-mer pê nizanim. Û nebihizim, hahh wilo.. Rabin piya, çibû ji we? Hê win çima dikevin, hee ka bisin, bisin.. Hê ewê çi bê serê we, ev ne tu tişteke. Haydê! Zû, hazir weziyeta meşê bigir! Veger çep! Rihet, tu erê-erê tu: mina seha bi hewte...!

Girtî- Hew, hew, hew.
Qerdîyan- Nebû, nabe. Ne-bû kurêmin. Ûla pûşt, ma te qet hewtandina seh'a nediye.
Girtî- Belê, min diye. Lê, ez ne kuçik'im, Qomitanê min.
Qerdîyan- Ma li te zor hat ne?! Êê. mabû, ma pozê te şewitî. Emê wê ji nerm bikin. Em çi bêjin wunê bikin. Dibî ku hetta sibê tu xwe hinê hewtandinê bikî. **Haydê, hey tu mîna gura bizûre.**
Qerdîyan- Ûûû, ûûû, ûûûûûû
Qerdîyan- Niç, niç, na, na, ne-bû. Ka dîsa bizûre.
Girtî-
**Bi dengekî ecêbmayî, di nav tirsê de mîna dengê dîka sewtek derxist;**
- Ûû ûûû ûûûû.
Qerdîyan- Wusa bi dilşewatî nezûre. Billa horre-hor ji te were.

Girtî-
**Dîsa kir ku bi dengekî ecêbmayî bizûre, sewt ji gewriyê derdixe, lê tu naşihube zûrandinê, dike-nake bi kêr nayne;**
- Ûû ûûûû ûû...
Qerdîyan- Bi derbek diduyan wî li erdê dirêj dike. Pêl gewriya wî dike. Rab, rabe, ra-be piya ibne! Tu erê tu.. mîna kerê bi bizire.. de!
Girtî- Ez nizanim, qomitanê min.
Qerdîyan- Ma tu li hember dertêyî?!
Girtî- Na.., lê, bellê ez ne kerim, qomitanê min.
Qerdîyan- Na lo! Lê hê tu çiyî?
Girtî- Însanim.
Qerdîyan- Na. Tu kerî. Bi zire!
Girtî-
**Dît ku dar bilind bû:**
- İnga, inga, ingaaa!
Qerdîyan- Na. Baş ne bû, nabe. Heta sibê dibî xwe hinbikî. Ka mîna pisika binawe.
Girtî- Miyaw, miyaw, miyaww.
Qerdîyan- Haah, eferim. Mêze te çewa xweş got. Hêêy tu! Ka mîna beq'a; qure qur bike. Haydê zû, nese...
Girtî- Viraak, viraak, viraaaakk.
Qerdîyan- Te mîna beq'ê, bêriya gol û çema, av û avzêya kiriye, ne wilo. He, ka çok bide.. Ha wusa. Te li derva tolazî dikira..
Girtî-
**Gûzeka lingê çepê gihandiye erd'ê û paşve qelabtiye. Lingê rast'ê daye pêş, çok digihê singê.**
- Beg'm, du jinê min hene, ma minê çima tolazi bik'ra...
Qerdîyan- Ûlan pûşt. Ma mirov bê tolazî kare bijî? Qiz û jinên mîna rihana li her derî hene. **Mina gotinê di ber girtîyekê de bavê.** Ûf, ax, ax ew qor, ax lan ax. **Rabin piya, zû rêz bibin. Xwe belotanî kin.**
**Hemû girtî mîna tê gotin dikin, qerdîyan bi darê destê xwe li wan dide dibe qêrîn û barîna girtîyan, ax-waxa wan, bi meydanê dikeve. Viyy dayê, ûy dayê peritîm. Ax, axx bavo...**
Qerdîyan- Xwe rastkin. Bikevin dorê. Rihet.. Ûla rast bisin. Xwaro-maro nesin. Nexwe ezê diya we ..., ezê rihhê we têxim qalik. Hih, hazir! Li mi veger, ho ho şoş. Ma we rast û çepên xwe ji birkir. Li ali di vedigern. Ho ho ma qey win li çiya ne. Çok bid! Hêy hêy tu, tu çima wiha şexsi rûniştiyi, rabe piya!
Girtî- Di çimê min de, raşitizm heye. Min nexweşina raşitizm derbas kiriye. Lingê min ji gûzekê pêş da na tewe.
**Çawîşek ji dûr va vî dengî dibihîze, bi bazdan tê û bi bîntengî li hember radiweste.**
Çawîş- Çê, çê, çê. Ma te go çê?
Girtî- Raşitizm.
Çawîş- Ûlan ew çiye, he çiye ew?
Girtî- Gotineka tibbî ye. Nexweşina hestiya.
Çawîş- Ûla pûştno.. wê hemû tişt û gotinên we bi "izm" derbas bibe he!
Girtî- Ma ez çê zanim. Wilo tê gotin.
Qerdîyan- Na na ne wilo. Aaaha (Kulmek hijdi davêjê) hah hin bibe ica.. ha wiha li erd'ê bi gevize. Ku tu

hin bibi. Ûla pûşt bê hiş ket... Wi bikişinin quncik. Billa lê israhet ke.. Ula hê pûşdê di li vê vezilandiye. Dibi bi kulma rabe. Hih, haş te ha. Wê çilo be, nayê hişê xwe..

Çawiş- Ka pimpê bine. Rabe ûla ma ev otêle? Ma xan e?

Qerdîyan- Keremke.

Çawiş- Pêl mid'a wi ke û millên wi bigir!

**Çawîş car-bicar devê pimpê dike dev û fîrnikê girtî û mîna peza bê gurandinê pif dide. Girtî hemû bi tirs lê mêze dikin.**

Girtî-

Li hawirdorê xwe fêdikire, destên we li ser newqa xwe hijd digre.. di nav êş û arincê de di gevize. Çavên wi nîv-vekiri, kinc û bedena wî perçe-werçe bûne. Dest û ser, mil û kincên wî ji xwinê sor bûne, wi bi zorê radikine piya, mina teliseki dikişkişînin jorê.

– Ha ha wilo çavên xwe veke.. Ûla were hişê xwe wisa ha. Çewa ye te xewnên şêrin dit... Rabe lan! Qerdiyan bigre em wi rakin. Ha wusa, temam. Ûla pûşt, diyamin bibe jina mi, ji vê işkencê mi zewq nestend: Bina min derneket.. Ooho tu nenêre ez ji vê işkencê hewqas zewq nastinim. Li min fek're, ez eskerim. dibi heqê va kinca ez bidim. Ne wilo? Haydê dest bi merş'a "Tirkiye" bike zû.. haydê!

Miheme- Zmanê xwe bi zorê dilibitine, mina lala. Min ne-ne xwest. Hin-hinnn-nnn bim.

Çawiş- Îbne, deme wilo ha. Veke veke destê xwe, veke pûşt, deyne ser hev, deyne! ha wilo qerdiyan ha wilo ti bigre. Bila nekşine. Ka neha tê bibinin, ezê bi ... dê û xwişkên te ... haj'te. Hih, hih dibi tu hin bibi. Me gellek weke te diye ku digotin em napeyvin, nizanim min ne diye. Dawiyê, hih haj'te..; hin mina bilbil xwendin. Neha ji devê wan nayê girtin. Hih, haj'te ûla ibne, tê bi cihhimi, bi cihhimi. Demeki kurt de dibi hemû marşa jiber ki..

Miheme- Gotinek ji jiber nakim.

Çawiş- Lawo, ev der dibistana eskeri ye. Te qeyd i bendên dibistanê bi cih bînî. Teres. An ezê te bifetisinim, ezê te, bû he.. Tê li girtixanê û li qawişê ray li hemû qeyd û bendan bînî. Tê li van razi bibi. Dema qomit hat kişandinê destên xwe berxwe va tê berdi. Bizeliqini. Mina pût bimini. Tê mina kevirê bê rih û can bisekini. Mîna roboteki, robot, robot temam. Mîna robot. Libitandin, virde-wurde tune. Tê bibi robot. Ka tiliyên destê xwe bide hev, rake.

**Bi hijd çend daran li serê tilîyên Miheme dixe; xwîn ji neynok û tiliyên Miheme diniqute kefa destê wî. Ka devê xwe veke... Venakî ne! Veke devê wî.. Ha wusa.. hê baştir baştir qerdîyan hêji ha, ha. Veke lan li diranê te mêzek'm. Ne diranê te diheşiyan. Bibime dixtor.**

Miheme- Na, naêşe.

**Wê gavê qerdiyan ji darê çawiş re darê xwe dike pêplûk û çawîşbi darê, zorê darê xwe têdixe nava devê Miheme. Û çend car bi hijdî li nav devê wî dide. Bê hemd Miheme diheje. Şaş dibe. Êş û zingîn serê wî digrin. Xwîn ji devê wî dinizile erd'ê.**

Çawiş- Hih, çi li wan xayinê welat dibe disa ne bese. **Li hev çav dişkînin û dertên ber bi derva.**

Qerdîyan- Heta ku ez bêm, libitandin ji we re tune ye temam.

**Du kes li hawîrdorê xwe mêze dikin piştre. Lawo, evê vana me bikujin..! Welew bi saxi em ji vê nafilitin. Ka wilo nebê lo, vi zilamî ji ku dan qawîşa me. Hişş, hêdî bi peyvin. Deng wê herê, nana nema billa herê. Teres bû bela serê me, nabinî çi tînin serê me. Ji ber çiye qey? Ka bise, bise.. ka wer;**

– Ha heval! Li vê derê, bi serê xwe tu nikari li berxwe bidi.

– Bira! Ma qey heyfa te, li te ji nayê? Qene, billa dilê te, li qawişê, li me bi şewite. Ji ber te em zirarê dibînin. Zirar digihê me hemûyan.

– Ji sedema te nan û avê nadine qawişê.

**Bi hatina qerdîyan ve disa hemû yên girtiya cihê xwe digrin.**

– Diqet!

Qerdîyan- Ji bo marşa Îstiklalê hazir! Rûyê xwe li al'ê bigrin. Hazir. Hey tu.. rab! Bi kişkişandinê ji ranabi? Rabe, rabe ûla, haydê marşa Îstiklalê bi meşe! Rabe lan!

Girti- Tê nagihêm ku rabin, qomitanê min.

Qerdîyan- Ew çi gotine, tênagihêm ku rabin he? Rihet, hazir. Hêy tu derkev pêş; marşê bide xwendin!

Girti- Serçava komitanê'm.

**Girtî dest bi marşê dikin. Perde tê girtinê.**

## SAHNE II

**Bi vekirina perdê va, bi hêrs girtîyek davê nava "Hucrê".**

Qerdîyan- Hah, qurbaneki di. Qaseka di, tê bibini xayino.

**Piştî qerdîyan derî diqefêle, qerdiyanek; bi qelem û topek kaxizê bin çengê xwe tê derî vedike, dikeve hundirê "hucrê".**

Qerdîyan- Rabike van û çiroka jiyana xwe b'nivise, haydê nese, zû... de zû hewqas li benda te me.. zû.

Muhsîn- Tiştê nivîsandiye, dixwine.

– Navê min: Îbrahim Şenol.

– Sala 1955a li hêla Rûhayê, li ovacix, gundê Hilwanê hatime dinê. Sala 1962a min li gund dest bi dibistanê kir. Û sala 1967a min dibistanê qedand. Û çûme dibistana navin. Sala 1976an çûm eskeriyê, û sala 1978an vegeriyam. Disa min li gund ali bavê xwe kir. Û li kar geriyam. Roja sêşemê disa ji bo gera kar ez diçûm Ceylanpinarê û hatim girtinê. Min anin vê derê.

Qerdîyan- (Lê hêrs dibe. Ji nişkava dest davêje nivisê. Li xweşa wi diçe. Bi çavsori dikene.)

– Ma hewqasan? Na, na te baş tam ji vi dari nestendiye. Haşte.. hah.. başqe te xwar. Tiştê vedişêri ji binivisine. Tiştê naxwazi ji. Haydê zû. Ma çiroka jiyana te hewqase.. hewqas kin û pûç e. Ka tê binivisini, na nivisini, emê hev bibinin, ji nûh de binivisine. Ka bise.. hê ev çine!

Muhsîn- Rastî çi bû: eve. Hê çê binivisînim?

Qerdîyan- Ka tu li cihê nermijandinê, ji lingan bê daleqandinê, carmixê. Billa jop têkeve ... wê gavê tê bibini. bi

axin û giri tê bipeyvi. A'na peyivi, binivisini a na nivisini wê bêyi ditin.

**Qerdîyan derê hesin digre û dertê derva. Li milê çepê vedigere û dikene. Ku dinav tepe-rep û lepên qerdîyana de girtîyekî nûh tê kişkişandinê. Dev û rûkê wî di xwînê de maye. Kincên wî qetandî ne. Ge li piştê siwar dibin, geh wî li erd'ê di kişkişînin; tînin davên nav "hucrê".**

Qerdiyan- Ma tu Merşa İstiklalê naxwini; li ber al'a Tirk bi pergal nasekini, dernakevi egitimê, radikevi he? Teres. Lo tu li çêyên xwe baweri. Çêyê te heye. Lo emê çermê we bigurinin. Min dê, zarû, bav ... yo... xayino.. Pûştê parvekar. Mirovê bê teşe. Ûla ma qey winê, wilo ji destên me bi filitin? Ûla emê we tunekin. Emê we hemûyan qirr bikin.

**Dema qerdiyan dertê derva, qerdiyaneki cendirme mase û sendeliki tine. Muhsin ji hucrê derdixe. Li ser sendeli rûdinine. Vê gavê işkenceci cihê xwe digrin. Di destê wan de, dosya û çiroka jiyana Muhsin heye. Ji hewşa girtixanê, dengên marşa û tepe-repa lingê meşina girtiya tê.**

– Ûla ker kurrên kerana. Xwe dirêjkin. bi kişkişin. rabin. rêz bibin. Rihet. hazir. Li ser lingeki pêş de marş.. bis her kesek li pişta yê pêş xwe siwarê.. **marş, bis! peyabin xwarê! bi bazdan herin-werin.** Hê zûtir! Ma win. win xayinên welat. Çima xwe dirêj nakin? Xwe naxinin-ranabin? Çima win emra naynin cih?

**Tepe-repa dar û nalinan ji xwarê tê. Di bin şiqeşiqa jopan da dengê girti tê. Ma win me bikujin. Em gavek ji navêjin.**

Qerdiyan- Parvekarna. qomonistna. Wê welat çê ji we hêvi bike. Heqe em we hemûyan serjêbikin. bikujin.

••••••••••

**Muhsin bi dest û çavên girêdayî li ser sendeli rûnişti, 5-6 kes li hawirdorê wî diçin-tên. Mına wî bi pivin. Ji linga ta seri lê mêze dikin.**

Yuzbaşi- Li sendeli rûnê. destê xwe deyne ser masê. Ka dest bi çiroka jiyana xwe bike.

Muhsin- İfada xwe ya nivisi bû. ji seri ta dawiyê disa got. Ha hewqas.

Yuzbaşi- Te eskeriya xwe li ku kir?

Muhsin- Manisa. Kişla Rojava.

Yuzbaşi- Ya. wilo ha!

Muhsin- Bellê.

Yuzbaşi- Wiyê bi tera hatiye girtinê ku cizdaneki bi navê Eli Özerden bikaraniye. Lê. dawiyê idia dike ku navê wî Bedr Özgüne. Tu di derheqê vi kesi de çê dizani?

Muhsin- Nasnakim. Rêwiki di rê de li erebê siwar bûye.

Yuzbaşi- Eyşe kiye. çi kese?

Muhsin- Nasnakim. Herdûkan ji tew mi nediye. Ji xwe imkan tune ku wan ji nasbikim. Lewra ji gund pirr derneketime derva; ta ku van hêllê derdorê xwe ji baş nasnakim. Ji xwe wê rojê ji. bi hêviya ku ezê li çiftlixa Ceylanpinarê ji xw'ra karek bibinim. ji mal derketim û çûm Ruha'yê. Lê gellek bû derengi. Ji ber ku min Ceylanpinar ê baş nasnedikir. çûm ku şevê li viranşehir'ê derbas bikim ku serê sibê zû rabin. bi rê kevim. fikra min ev bû. Ji ber vê yekê diçûm. Lê min çend cara li ber terminala "Oto şarqê" şofêr li parqê diye. Bi şekil wî nasdikim. Ew kesê win dibên û jinik. li rê siwarbûn. Ez li Wêranşehir'ê hê li cihê seknoka texsiyê siwar bûm.

Yuzbaşi- Ew kitabên qedexe. belavok û pirtûkên hatine ditinê yê kine?

Muhsin- Nizanim.

Yuzbaşi- Wilo he! Lê ew 3.000 Mark perê hatine ditinê. ew yê kine?

Muhsin- Va ji we dibihizim.

Yuzbaşi- Dimek navê te İbrahim Şenol'e he. Çewa jê bawerkim?

Muhsin- Cizdanê min di destê we de ye.

**Yuzbaşi- Ûlan ker kurrê kera, tu ne wilo ye. Rastiyê bêje. Ka bise. Ji binjopa ji nakşini destê xwe ne zû zû wî ji erd'ê rakin. Ka wî li pelegoşka xwe bibine. Wê gavê dinya çewa ye tê bibini. Hih deng ji dernaxi ne.**

**Çiqas miaş ji Apociyan distini, bêje çiqas? Talimat û emra ji ki distini? Çend kesan kuştiyi? Bêje.. bêje ûlan te zmanê xwe xwar!**

Muhsin- Ti kesan.

Yuzbaşi- Kijan Apociyan nasdiki?

Muhsin- Nasnakim.

Yuzbaşi- Kingê bûyi endamê Apociya.

Muhsin- Ne endamim.

**Vê gavê êrişê ser dikin. Ji kulm û pihina, ji jip û daran Muhsin bêhiş dikeve. Qerdiyan û kesê di, bi qevdikê şalê wi digrin û bi kişkişandinê wi davên hucrê.**

**Yuzbaşi û kesên din dertên derva.**

Qerdiyan- Ha li vê bi cihhime.

He ji hewşê dengê girtiya û emrên qerdiyan tên. Bis.. dido-dido veqetin. Çeri hev u du bikin. Ne sekne.

– Qomitanê min: çer... ez... ez...

– Ûla heywan kurê heywanan destpê kin.

**Li hucrê bere-bere hişê Muhsin tê seri. Li hawirdorê xwe mêze dike. destê xwe davê qelşa serê xwe. Xwina ser-çavê xwe paqij dike. Û hêdi-hêdi ji xwe dikeve peyvê...**

**Muhsin- Dibi ez pê zanibim ku şoreşgereki li herderi û di nav her hoyi de herdem xwediyê irada xwe be. Mîna her hevalê xwe ez ji li ber imtihaneka mezinim. Li ber her ihtimaleka hundur çi dibe-nabe dibi ez xwe haziri her tişti bikim. Pişti vê ji, di çê hoyan de dibe bile be, bi işkencê li ser irada şoreşgeran nayê hikimkirinê. Dibi ku ez nekevim tirsa canê xwe. Hewqas xwar nebim! *Bijî Serxwebûn, Bijî Enternasyonalizm, Bijî Partiya Karkerên Kurdistan.***

**Muhsin hêdi-hêdi bi dizî bi dengekî sivik bang dike hucrê jor û jêr. Car bi caran li diwar dide. Dixwaze hin tişt hîn bibe. Kîne yên li hucra. Kîne yên li hucrê jor... kîye li hucrê rast û çep? Hevalno! Deng bidin.. deng... her hal li işkencê ne, an jî deng naçe wan.. kîye? hevalno kîye li hucran?**

**(Dûmahîk heye)**

## HOGİRÊN HÊJA!

*Li mahkemên Kurdistana-Tirkiye yê ku hê têne dîtinê, berê; tenê ji alî karbidestên mahkemê va dihat îdîakirinê ku gelê Kurd tune. Zmanê Kurdî, zmanekî lihevhatî ye. Û Kurd ne xwedîyên wêje, çand û sin'et'in. Lê, niha dibin nirên qolonyalîsta faşîsta cunte de, ji faşîzmê pişt dibînin, ji xeynî sawcî, dadgêrên mahkema ji berî ku biryar ji bê danê, hê ji domandina mahkemê de di derheqê nebûna Kurda û zman, çand û zmanê Kurda de îdîanê tev-lihev diparêzin.*

*Dibî ku dîwarên mahkema bibin cîhgera polîtika me. Mîna tê zanînê, dema DÎMÎTROV tê mahkemekirin; Dimîtrov di mahkemê ji sawcîyê jê ra dibê* "gelê Bulgar tune", *vê bersîvê didê:* "Serdarê Prûsyê, min zmanê Almanî tenê bi hespên xwe yê bezêr ra dipeyivî" *û hebûna gelê Bulgar daxûyan dike. Û ev gotin ji hemû hogiran re bûye rêber.*

*Ez vê vejandina kurte-birî, di derheqê çanda Kurd, sin'et û wêje û zmanê Kurd e pêşkêşî we dikim. Ev nivîs, bi çi awahî, çanda gelê me ji alî hêza zorbazan ve hatî ye pejrandin, bi danezanên nîşane daxûyan dike. Bi pêşkirina nîvîsê amanc e ku ji doza me ra xizmet bikim. Nexasim li hember sawcî û karbidestên qolonyalîsta bê parastin û ji der-dorên mahmeka ev yek bigihîje hemû hêllan. Lewra a pêwîst doza me ye...*

*Ez vê nivîsa xwe ji bîranîna hogir MAZLUM DOĞAN re dîyarî dikim. Ku ew dibê «*Amancê dewleta Tirk e ku, gelê Kurd tunebike. Mahkemên li Kurdistan'ê ji hebûna dewleta Tirk re (ku evana sazgêrên dada Tirk e) destikin. Cezayên ku mahkema bidin; ji cezayên hêllên sînoran; çîyayên Kurdistan, deşt û bajêran, û ji yê gund û taxan ku ji beşera mirovî pêştir tu sûcê wan nîne, ji cezayên li ser sedan lawên Kurdistan'ê tê kirinê, ji van cezayên hov û nemirovî dijwartir nînin.»

Bi qedr û silavên şoreşgerî.

# Lİ NAV NETEWA KURD TESÎRÊN WÊJE, ÇAND Û SİN'ET

BÊŞİK, yekê ji taybetê hebûna netewa dide nîşandanê ew ji sin'et û çand e. Vê; Lenin dibêje ku; ji gel ra pêvajoka gihana netewbûnî, ji yekîtîyê, ax û çand û zman diafire. Dîsa li gohra Lenin daxuyan tine, ger çanda komcivakek tune be, netewbûna wê komcivakê ne mimkun e.

Gelê Kurd, hê li ber banga dîroka beşerî li rûyê dinyayê, bingehê bizra çand avêtî ye. Di vî alî de netewkî yekemîn e. Ku gelê me, bi hebûna xwe ya dîrokî, 300 salan berî miladî, kêrî medenîyeta dinyayê hatî ye. Fîlozofên Rojava ku di cîhanê de bi nav û dengin; destpêka medenîyetê digihînin kufşkirina tekelekan. Pêkanîna destikên gerê ji abûrêran bûne sebebê pêşketinê. Başe; komcivaka tekelekê medenîyetê gerand û ber bi vê amancê va dibeziye, kijan komcivak e?

Nivîskarê bi nav û deng yê Îskandînavî GRÎMBERG tîne zman ku neqla ewilî Kurd'an hespê kedîkirine. Û ji bo bar û siwarîyê xebitandine. ([1]), ([2]).

Di mintiqê de bi vî awahî gelê Kurd îmkanên gerê bikar dike, digihe dewletî û ji bo pêşketina têkilîyên abûrê, rêya ber bi netewbûnî jê ra vedibe.

Ji behra Hezar, delava Basrê, ta Îskenderûn'ê û ew cîyên ku bi Anadolê têne zanîn, li van derên fireh û li gellek cîyan, ji 5 000 salan ve ye ku di van erda de, hebûna xwe didomîne û xwe di sitirîne. Mîna netewayên serdest, bêdadî, pêkanînên nemirovî, qetlîam û êrîşbazîyên li serê karhatine, tenê gelê Kurd xasîya xwe parastîye û mîna wana, zerp û pêkanînên nemirovî bikar neanî ye.

Ji ber Kurdistan di nav-bera Asya û Ewrûpe de mîna pirekî cîh girtîye, ji sedemê vê yekê ji gellek qewmên êrîşkar, hov û xwînrijan re bûye cîhger. Ji sedemê gellek yekan, nexasim ji ber vê rewşa dijwar e ku gelê Kurd dembidem xwe kişandîye hêllên çîyan. Bê guman ev rewş li ser civaka Kurd tesîr dike. Û gellek neerînên vê rewşê hebin ji, di hoyên dijwar û guhartî de destkêranîn pêş de diçe. Li ser sin'et û hwd. tesîr ava dike. Bi hatin û êrîşên koçberê Asya'yê, ber bi Anadolê rêdikevin, û pêjrandinan bikar tînin. Lê, her ku çiqasan sin'et û danezanên çanda Kurd hatibi pêjrandin û gellek ji wan hatibin tunekirin ji, ew qewmên Asyatîk bi demê di nav qewmê erdgirtî de dikevin binê tesîra çand û sin'et'a Kurda û di navê de di helin.

Nexasim; dîroknivîskarê Yekîtîya Sovyet Grîyen pêvajoka tesîr girtînê ta digihîne berya dema qewmên hov. Û wiha dibêje; «*Gelê Kurd, berî Îraniya wêje û nivîsa Asûra zanibû. (Bi rastî, Asûrî jî wêje û nivîs ji Kurda hîn bûne (y. nivîskar). Kurd ji Med'a ne. Anî Mar'a li ser keviran nivîsandin û pût'a çêkir. Piştî ku Îran'a (Fars) Med'a binxistin pê de* Guros, *wêje û sin'et'a Kurda bikar anî».([4]) Bi van jî,* eşkere dibe ku gelê Îran, wêje û dewlemendîya sin'et'a gelê Kurd, mîras sitendî ye.

Ku îro ji li hemû derên Anadol'ê, li Sûrî, li Îraq û li Îran'ê ku van civakan gihane dewletî, li ser van civaka tesîrên folklor, çand û sin'et'a Kurda têne dîtinê. Çînên serdestên civakan, hêzên emperyalîst û hêzên qolonyalîst, ji alî sîyasî ve Kurdistan'ê ji hev parvekirin e, bi vê jî têrnemane çand û sin'et'a gelê Kurd ji hev pejirandine, polîtîka asîmlasyonê bi giranî li ser vî alî bikar anîne.

Lê, ro bi herîyê nayê sihandinê. Ji 5000 salan ve ku li ser vî erdî, sin'et, çand, mîmarî, sin'et'ên xweş, xemlandin, wêne, heykel, muzîk, sin'et'ên desta, û ta (gastronomîyê) sin'et'ê kîlerê, gelê me sitrandîye û ji netewên serdest ra bûye rêber.

Emê di vê nivîsê de rastîyan, li ser nêrîn û danezanên biyanî bi rêz bikin û bidine nîşandanê.

## BAWERÎ Û REQS

BAWERÎYÊN OLPERESTÎ li ser beşerên –ku di ilim de bi determinizm tê navdanê–yanî; ew dema tarîya ku dema navberan vejandina bûyera ji rexê bûyeran tê kirinê, tesîr ava dikin. Ev rastî, ji berçavan nayên dûrkirinê. Kurda ji demên baweranîna rojê, hîv'ê hwd. derbas kirine. Mîna ku Bazil Nîkîtîn dibêje; «*ji xeynî baweranîna misilmanî yê gelê Kurd,*

*bêşik ji alê xwe va, taybetên xwe yê xas sitirandîye û taybetên xas afirandî ye. Di vî alî de, rewşa xasî ji ber çavan nayê avêtinê. (Mîna êzdîtî) Dî vî alî de taybeteka xas digrin. Qena gelê Kurd di vi rexî de ji xwe ra bi her awahî rê û karanînek pêkanî ye»*([5]) Bi bişkavtina Nîkîtin jî eşkere dibe ku; baweranîna misilmaniya -ku ne demî ye- gelê me wê li gohr pêşketina xwe bikar anî ye û daniye cihkî ku lê tê û di vî alî de kêrhatiyê vê yekê bûye.

Hê demên berê ku olperestî perçek ji jîyanê ye gelê Kurd xwe ber bi dîtin û baweriyên lihev-hatî berneda ye. Bellê qedexeyên ku sîstema misilmantiyê aniye, di nav vê rewşê de gelê Kurd, sin'et, reqs û muzîka xwe li pîya hiştî ye. Wêne yê şer'a, xezal û mirovan û wêne yên tawûz, li ser xalî û merşên xwe nexşandî ye. Pûtên ku li Ûrartû, Mitraîzm û li Ninîv'ê hatine dîtin, îro muzeyên dinyayê dixemilînin. Îro di nav danezanên nişane de, li muzeya Berlin'ê esereka qeşartî dimine -ku ya keç û kralê Kurda, Kassiet e. Ku keça xwe ji xwedê ra qurban dide- Neha li muzeyê cîyeke bi nişane digre. Ji berî misilmantiyê hezar salan wir de xebatên sin'et'î destpê bûne. Di nav hewqas qedexeyên dijwar de, dîsa gelê Kurd xwe ji xebatên muzîk û reqsê negirtî ye. Eslê wî Afganî be jî, ji ber ku mewlana, çar salan li nav Kurdê Erzincan'ê maye, Bazil Nîkîtin di kitaba xwe (Kurdan) de toreyê sema daxûyan tîne ku ji "Yêzdîtî û Zerduştî" sitendî ye. (Jiyana wî ya wê hengamê û mayîna wî ya 4 salan, misteşarê berê yê çand û berpirsîyarê muza mewlana Mehmet Onder û xwefiroşê (eslê wî Kurd e) nivîskarê rojnama 'Tercüman' Ahmet Kabaklî, di kitaba xwe ya 'MEWLANA' de bi xwe eşkere dikin.) Îro jî sema bikar tên. Û di nav gelê Kurd de didomînin. Mîna B. Nîkîtin daxûyan dike, ev ji Kurda hatiye girtin ([6]).

Dema ku sema pêk tê, navên têne xebitandinê, Mutrip, Derwîş, Bender, Cem, Dergah û hwd. ev tê zanîn ku ji zmanê Kurdî tên. (Ferhenga Tirkî û Kurdî ya Yûsûf Ziya Paşa, werger û rêzvan, M. Emin Bozarslan).

Ji hêlla wezîrê çand û turîzmê va bi navê örf û edetê Tirka ev rastî rê veşartinê. Û bi çanda Tirk tê naskirinê. Ku ev reqs û muzîk ya gelê Kurd'in. Bi destê dewleta Tirk, vê çanda dewlemend sedcare ku li Îngilterê, Danimarka, Îtalya û li Kanada tê nîşandanê. Ji hemû hêl û hunermendan rastî tê veşartinê.([7]) Bi rastî, burjuvaziyê Tirk li gohra şovenîya tewrên qolonyalîstiya xwe gotina Kurd nayne ser zmanê xwe. Û yên vê li ser zmanê xwe dilibitînin mîna Î. Beşikçi xelata wan ceza ye.

Îro di radyoya Tirkîye de, gotina meqamê (Kurd li hîcazkar hemû kesan dibişirîne. Û hewqas jî têdixe gumanê). Ji meqamên muzîkê, huseynî, nîhavendî hwd. ji hêlla hunermendên muzîka Tirk de jî tê zanîn ku ev meqamên muzîka Kurdî ne. Di muzîka Kurdî de gellek enstuman jî hatine xebitandinê. Ku di vî alî de jî çanda Kurd dewlemend e. Nexasim yê ku Ahmedê Xanî, di dîwana "Mem û Zîn" de nivîsandiye. Wek;

SAZAN MÎRÎ KÎRÎN WEKÎ SÛR
KÛSÛ DEF Û KÛRRANE Û NAQÛR

di bendê de xuyaye Naqûr, Kûrrane ji orjînalên enstumenda Kurdî ne.

Dema Tirk Anadolê têdixin destên xwe, em dibînin ku di serî de ray li muzîka Kurd û Ermenîya û Ereba tînin. Dema sedsala XIan de bi koçerî diherikin Anadol'ê, piştî dest ji koçerî berdidin, li erdê cih digrin pê de li ser muzîk hwd. disekinin. Û bi giranî ji yên civakan tam distînin. Lê, yên naxwazin vê rastiyê bibînin derketine.

Profesorê dîroknivîkarê Yekîtiya Sovyet HALFÎN, ku berpirsîyarê dîroknivîskarê burjuvaziyê rojava, parasvanê qolonyalîstiya Britanya CURZON dema dibêje, «*Dîroka Kurda nayê zanîn. Bi texmîne ku ev netew; bê dîrok û bê wêje ye*» ji ber deqa reş dide bîranînê ku neha vê yekê mahkemên qolonyalîstan pêktînin, profesor Halfîn vê bersivê dide «*Nexasim dîroka Kurdistan'ê ya dema nûh jar hatiye ronahîkirinê. Nivîskarên burjuva di derheqê Îskender'ê Mekedonî û li ser 10,000 Gîrekî, ku di Kurdistan'ê de derbasbûne bi cildan kitab nivîsandine. Lê di derheqê dîroka Kurdistan de tu xebatan nekirine. Nexasim jî di derheqê sedsalên XIX. û XXan de -ku li hemberê zilm û êsîriyê gelê Kurd, tekoşînên mezin û qehremanîyê bi şan nişan daye- gellek tişt jar hatine nivîsandinê. Ta ku rastiyê bi zaneyî neanîne zman, neximandine.* »

Ya rastî jî, dema generalên faşîst, sedhezaran kedkarên Kurd, keç û jina, dergûş û rûsipîyan bi bêdadî di qetlîaman de derbaskirin (mîna Dersîm, Zîlan, Axrî, Qoçgirî hwd. pêkanînên li keç û jinan tê kirin, ji kitaba Nûrî Dersîmî bixwîn). Mûkê van nivîskaran ji ne hejîya. Hêzên qolonyalîst û berdestkên wan, Ermenî û Kurda di qetlîaman de derbaskirine, jenosîdên eşkere pêkanîne. Lê, bawerî û çand û zmanê Kurd li piya ma ye. Di 'Îhtîyat-î Kuvvet Millîyet' de, di derheqê vê yekê de Dr. H. Kivilcimli wiha dibê «*serekî gelê Kurd heye (serê Kurd) ku, ev ser çiqas bê tarûmarkirin, mezin dibe. Çiqas bê jêkirin hewqas dişuhube serê ziyayên çîroka...*»([8]).

## OZAN Û MUZÎKA GEL

OZNAÎYA GELÎ, ji perçek çand û sin'et'a Kurda ye. Ozanên gelê Kurd ji sedsalan ve ye ku di cejnên Newroz'ê, dawet û şevên çila, û di şevbêrkên gunda de sin'et û hunerên xwe yê, rexne-berî, pezindan, xweşkirin û helbesvanî derdixine meydanê. Ku ta carnan di hembergotinê de ozanên bin dikeve destikên hunera xwe ji hemberê xwe ra datîne erdê û dest jê berdide.

Ozanêkê ji der-dorên gund were û li derê rûniştinê dest'ka hunerên xwe li diwêr daleqîne, ev bi ozanên gund tê manekirin ku li hemberî wan meydanê dixwînê. Li ser pêşketina hunera ozantiyê tesîrên vana hene, ku ji Gutîl'a, Kassit'a, Ûrartû û ji Med'an ve, gelê Kurd tora xwe yê sin'et'î meşandî ye û tore'yên zerdûşî û êzdîtî, bi misilmantiyê ve jî; toreyên alevîtî û şiîtî tesîrên civakên reqs, muzîk û gotebêjî çêbûne. Rola van yekan jî hebûn e.

Ozanên gelê Kurd, di şerên rizgariyê de ku di berxwedannên hember dijmin de şehîd bûne, li ser şehîd û şervanan helbestên pêwîst afirandin e. Û van kirine malê wêjeya Kurd. Ji dîrokê hejmarên ozanên Kurd gihaye hezaran. Lê helbestên wana ji ber zerpên dijmin û nîrê qolonyalîstî û talanbaziyê negihane wêje ya nivîsî. Ji hev pejirîn e. Û piranîya wan wunda bûne. Ev wundabûn, tenê ne ji bo wêja Kurd, ji wêja dinê û dîroka beşerî ra jû wundabûneka wêjenî ye. Ji ber vê yekê barê giran evê ku; gund-bi gund, mal-bi mal, sin'et'a dewlemend ku di hiş û mêjîyên porsipîyên Kurda de maye bê kêmasî, taybetên folklora Kurdî, çîrokên gelî, efsane û helbestên li ser şehîd û qehremanên gelê me derbûne,

bêne komcivandinê. Ev kar, karekî pêwîst û giran e. Lewra dem asê û kine. Hêzên qolonyalist hemû destikên xwe, li her gundî radyo û televizyonê xwe bi cih kirine, amance ku taybetên di hiş û mêjiyên gelê me de, mane tunebikin. Nexasim li ser vê, bi dijwarî disekinin. Û lewra; komcivakên xwedî li çand û sin'et'ên xwe der'nê, hatin û civandin û rabûna wê ne mimkin e. Pêkanîna komcivandinê wê balla, sin'et û wêje nasên dinê ji bikişî ne.

"Dewlet heta neha li ser ozanê gel nesekinî ye. Û ji bo wan, qet xebat nekirine, ev xebat nehatine dîtinê. 600 salên dema împaratoriya Osmanîya, 46 salên dema cimhûriyetê nêzî ozanên gel nebûne. Ji bo pêşketina sin'et û hunermendîyê tu alikarî ne dîne... " Xwedîyê van gotinan, endamê mahkemê anayasa Tirkiye Ahmed Erodğdu ye. (Rojnama Cumhuriyet, 1980-Sernivîs: Xebat û Ozanên Gel). Ev kivşkirin rast e. Lê, sedemê wê nehatiye bişkavtinê. Lewra kanîya sin'et'ê ku tê zman, çand û sin'et'a Kurdî ye. Piranîya helbestên gelî, ji yê gelê Kurd, Ermenî û ji welatên Balkana hatine sitendinê. Û gotinên wana hatine guhartinê. Bellê, helbestên gundî û kedkarên Tirka heye. Û gellek bi rûmetin. Lê çand û helbestên Kurda, bi navê Tirkî têne guhartinê û bi vî awahî tê dîyarî. Ev tewrên zorgirtîya ye.

Li Tirkiye ji hêllên Diyarbekir, Ruha, Wan, Dêrsîm, Qers ta der-dorên Siwas'ê helbestên Kurdî tên civandin û bi zmanê Tirkî têne weşandinê û cihên serî digrin.

Bi vê nivîsa Kurte-birî, rêya vekirina hemû şaxên huner û ozanîya gel nîne. Lê, emê ji helbesta Alişer ozan, û qehremanê nemir, bendek bistînin. Ku helbest ji devê gundî û kedkarên Kurdistan'ê, ji neksa şoreşger û şervanên rizgarîxwaz dernayê li vê rêz bikin:

*"Dilo yaman yaman yaman*
*Çîyan kirto berfo dûman*
*Mera bisin sahî merdan*
*Ev dernavê hemû derdan (°)*

Ji wêjeya Kurda em dixwazin ku li ser şaxê kilam û helbestan ji bisekinin. Ev helbestên ji hêlla kedkarên Kurda ve, di jîyana kar û civatî de têne zman, di lîteratora Kurdî de cîyekî xuyane digrin. Ev gellek bi nave ku li hêlla Ruha, dema jin dan di kutin, darên destên xwe bi nîzamî li dan didin û di berê de helbestan dibêjin. Û ji çar alîyan ve karên xwe didomînin. Kedkarên Kurd, di jîyana kar de mîna helbest û hunermendî kiribe, adana xweydana xwe û vê pêkanî ye. Ji ber ku qurna wê digihîje destpêkên demên berê û dibe nîsana gelê Kurd ku ji wê demên ve domdarê jîyanê ye û ji ber şervanîya gel danezandin dide, emê kilama keça cirikçi jê bendek pêşkêş bikin:

*Dolavê darî dê re, darî dê re*
*Deng tê dengê dolavê*
*Dolavê darî dê re darî dêre*
*Tirphinê û girphinê dolavê*
*Di rêsim heriya jê re, herî jê re*
*Deng tê gengê dolavê*
*Di rêsim heriya jê re, herîya jê re*
*Tirphîn û girphinê dolavê.*

Ozanên Kurda tûcar ji caran ji bo şehîd û qehremanên Kurda re bi şaî negotine, helbestên peznê nivîsandine. Ev taybeteka ozanên gelê Kurd e.

Ku, li Şemdîna, li hemberê dijmin, piştî qehremanî û mêrxasiyên nîşane, Heyder'ê kureyşî şehîd dikeve. Dûrsin'ê birayê wî li serê helbest dinivîsine, û bi muzîka Kurdî xeml dide.

*"Şemdîna, şemdîna habê şemdîno*
*Durs vano, bra sa Heyder, serkho va dare*
*Tic biya sirine tfank erzino*
*Sa Heyder vano, bra Durso pero de ma perdodine*
*Ba dewletra, mare par ve cino*
*Durs vano, bra pare tirk perskennay*
*Fincana kafadi, jero ne simino*
*Pane, pane, sa Heyder pane" (¹⁰)*

Li nava gelê Kurd, ji mirinên bo welat re nayê êşandinê. Tucar nabin sebebên êşê. Ji ber ku, dora vê hatiye, bi kurte-birî vê yekê pêşkêş bikin ku, sala 1927an, Nûh'ê Huveyt û ji xweşmêrên Kurdan Îzet û Sadiq li hember eskerên Tirk dikevine şer. Ji sedemên vê yekê xwişka Nûh: GULNAZ'ê digrin û dibin Mûş'ê. Di dawîya hemberîyên giran de, birayê wê Îzet û lawî wê Sadiq şehîd dibin. Generalên destbixwîn serên wana jêdikin û dişînin Mûş'ê. Gulnaz'ê ji girtixanê tînin ku serîyan bi wan, bide naskirinê. Gulnaz'ê pêşî li ber serê Îzet dise û xwe xwarê erdê dike. Û ji bo tekoşîna gelê Kurdistan mêrxasîya Îzet tîne zman. Dawî, li ber serê lawê xwe radiweste. Destên xwe dirêjî porê serê jêkirî dike û çavên wî maçî dike. Bi dengek bilin; *«Vîya beranê min e. Min, ji bo vê rojê şîr daye lawê xwe . Min ji bo Kurdistan'ê ger kuştina wî nediya, minê şîrê xwe lê heram bikirana».* N. Dersîmi piştî bûyerê pêşkê dike, rûmet û taybetên jinên Kurdistan'ê bi vê gotina pêşîyan, gotinên xwe girê dide: **"ŞÊR ŞÊR E, ÇÎ MÊ YE, ÇÎ NÊR E"** (Dîroka Dêrsîm, R: 229-230).

## LEYSTİKÊN GEL

HELBEST û folklor û leystikên gelê me ji der-dorên Erzirûm'ê, Qers'ê, Bedlis'ê, Mûş'ê, Elezîz'ê, Bingol'ê, Dêrsim'ê, Wan'ê, Ruha'yê û ji hêllên Dîyarbekir'ê ji alîyên karbidestên qolonyalistan ve tên pejrandin û talankirinê. Û mîna folklor û leystikên Tirk têne nîşandanê. Nexasim, ji salan va ye ku folklora li welatên Ewrûpî didine nîşandanê, niviskar û berpirsîyarê kovara folklora Tirk derdixe, Îhsan Dinçer li Almanya yê ji keseki ku bi rojnamevanî nazdikire wiha dibê; *«rastîyê em binin zman. Bi sayên leystikê gelê Kurda ye ku em, gellek caran li Ewrûpê biserketin e. Çiqasan em bêjin ku evana leystikên ji kaniya folklora Tirk e ji –bi bêjin-nebêjin ji– hunermendên Ewrûpî, Emerîki û Asyayî, bi rastîyê zanin. Nexasim, sala buhurî li Frensa, me sereki qezenç kir. Lê, leystikên (folklora Kurdî) ku xelata zêr sitend, di rojnamên Frensî de daxûyan bû ku, ji folklor û leystika Kurda ye. Em lê şaş man...»* Rastîyê li xwe datîne. Lê, hebûnên milleteki, mirov li xwe bigre ji nemirovî bixwe ye. Leystikan ku bi hayhuyî, bi şûr û mertal tê leystandinê, ji ber şerxwazî, dijberî û êrîşên Tîmûr, Atilla û Cengizxan, didine bîranînê, ji alîyên Ewrûpiyan ve dijberî dikşînin. Ji ber vê yekê, bi fermanê wezîrê derva û bi raya wezîrê turizmê ji nav leystikên dîyar dibî biyanan rakirin. Yek ji talana rastîya çand û folkloran Kurda ev e.

Taybetê leystik û folklora Kurda ye ku ji xeynî rewşa muzik û deng û reqsan, her leystikekî li ser taybetê civakê pergal girtî ye. Û rewşa civakê tinin zman. Di van leystikan de jîyana mala civaka Kurd, efsaneyên di nav gel de cîh girtine, çîrok, bûyer û bîranîna qehremanan û hwd. ev leystikên folklora Kurd tinin bîranin. Ger leystikên gel, baş bêne vejandin, ewê xêza leystik û folklora gelê Kurd jî derbikeve. Ev rastî dibe niqtaki ku gelê Kurd ji refa Îndo-Ewrûpî ne. Lewra di leystikên gelên Îndo-Ewrûpî de jî leystik ji çepera reqs û muzikê derbûne di hemûyan de, jîyana malê, yan jî bûyerên civakê têne jîyandinê.

Li ser çand û sin'et'a Kurdan di serenava biblografya de me dû kitaban dît. Lê me eslê wan peyde nekir û ne vejandî ye. Yek ji van: ya nivîskar Dr. Mokrî Keywanpour e. (Sitranên Kurd, Tehran, 1951). Ya din a nivîskar Bois Thomas e (Di Şewqa Leystikên Gelî De Rihê Kurdan. Paris, 1946).

## ÇÎROK Û DESTAN

TAYBETEKA wêje û sin'et'a gelê Kurd di metelok û çîrokan de xuya dibe. Ji berî dema Osmanîya ve wêja Ereb û Farsî serdest bûye û li serê nivîsandin berdewam bûye, gellek hebûnên golklora gelê Kurd bi devkî xwe gihandine rojên me. Ji ber tim li ser zmanê Kurdî afirîne, taybetên Kurmancî yê ne guhare jî bi xwe ra anîne. Ji bo vê yekê gellek bi rûmetin. Ji kesên van bi devkî neqil dike ra racon teur' tê gotinê. Ku destana qarnewala Fînlandî ji van kesan hatî ye civandinê. Li nava gelê Kurd ji, ger dengbêj an gotebêjên di efsan û çîrokên gelî, wêjeya gel, ji sedsalan ve anîne ta rogen me û di nav salan de afirandine. *Memê Alan* di vî alî de destaneka bi nîşan e. Îro jî di nava gundên Kurd de di nav dê û bapîran de gellek 'recon teur' xûyan dibin. Profesorek ji salan ve ku di nav gelê Kurd de çîrok, kilam û destanan bi hurbijarî kom dike. Û yek ji vana di bantê de heftiki derdewam dibî.

Bêşik, ev profesor tê nafikirî ku ev jî wêjeya gelê Kurd in. Û kurd bûna van kesên jê re gotine ji, nade berçavên xwe. Ev di hişên wî de derbas nabin. Û li gohra wî, Kurd yên li çîyan dijîn û tûran'n. Tiştên hilbijartî ye jî dibî ku asîmle bibin û bi navê çanda Tirk bêne weşandinê. Ji 60 salan ve ye ku li Kurdistan'ê yên hebûna folklorî ya gelê me dicivînin (Ku evlatûn Cem Guney jî taybetên folklora Kurdî bi navê ya Tirkî weşandi ye û talanbazî kirî ye. Û ji hêlla qolonyalistan û li derva xelat sitendî ye. Ji bo vê yekê dewleta Danmarkî xelata wêje dayê.

Lê, wê dema hatine biryar dide. Ne mahkemên talankir, pejrandar û talanbazê çandê û ne jî mahkemên ji sê kesan sazdibin. Wê civak û gel biryar bidin. Lewra talana çanda dewlemend, naşuhubê talana xezîna zêra! Eslê wê ya kîjan netewa be jî, talan xezîna çandê dişuhube dizîya hember mirovî. Û çand û folklor a kîjan gelî be pê tê bîranin û pê ra dijî... Dizekên eynika çanda Kurd dizine, dema lê mêze dikin pê ra dizitî û dizekîya xwe dibînin.

Dîrok nivîsarên çand û wêje, yên biyane, çan û wêjeya Kurd, divejininin. Bi navnasîya Kurd, bişkavtinên xwe daxûyan dikin. Ger ji vana çend misal bêne nîşan danê:

1. Nerîn li ser wêjeya Kurd, 1955 Al-Machrik, hej. Nîsan û Adar.
2. Çîrok û destanên Kurdistan, 1946 Grunel A.G. Paris.
3. Nerîn û çîrokên Kurda, 1860, Jaba.
4. Berhevokek ji şairên Kurdê Sovyet, 11939, çap, 2.ya 1953.
5. Çîrokên Kurdî, 1856 Chantre Ernest-Saint-Petersburg.
6. Çîrokek Kurdî ji hêlla Sêrtê, 1910, Dufresne.
7. Kurtnivîsên Kurdî.
8. Ji Kurdên Rojhelata Kirmanşahê, destan û helbestên nimûne; Mann Oscar, çapxana Georg Raimar-Berlin.
9. Metelokên Kurdî derheqê heywa netan de, 1922, Basil Nikitin, Londra.
10. Metelokên Kurdî, B. Nikitin û Soane.
11. Gotinên pêşiya, 1936, Paul Marguerette, Paris.
12. Bi zarê hêlla Bota, berhevoka Kurdî, çîrok û Kilam, Socin Albert.

Bi pirane, me kitabên ku zû ve derketine navên wan da. Û tenê van daxûyan kir. Başe ji bo bi? Ji bo, daxûyan bibe ku berî ji hêllên qolonyalîstan ve bi giranî bêne pejrandinê ku li dinê û di nav cihanê de têgihiştina çand, sin'et û folklora gelê Kurd pêkhatî ye. Ku piştî van kitaban bi hezaran nivîs hatine nivîsandinê, dewlemendîya çand, sin'et û folklora Kurd, dane zanandinê. Û ev kitab bi gellek zmana çap bûne û di nav wêjeya dinê de cihên bi nîşan digrin.

**Dûmahîk heye**

# Jİ KURDİSTAN' A BAŞÛR

Mîna tê zanîn ku; berberîyên li hêllên Rojhelata-Navîn di navbera hêzên şoreş û dij-şoreşê de pêktên, dijwarî û giranîya berberîya hêzan; bi tekoşînên germ û berberîyên tûj û eşkere, li ser Îraq'ê têne meşandinê. Ev hêll bûye girêka berberîyan. Berberîyên hêzan xwe li vê derê girtin e. Hêzên dij împeryalîzmê, hêzên pêşverûyên hundur û der, li hemberî rejîma berdevkê paşverûyên mintîqê û destika împeryalîzmê li dijî dîktatorîya faşîstê Sedam şerek eşkere di domînin. tînin. Yên ji berê hebûn jî, ji nûh ve tevgersazîyên xwe pêk tînin, pêş de dibin. Rêxistinên hemberî rejîmê, di nav-berên xwe de, sef-bisef cebhena avakirine, û li dijî rejîmê tekoşîna çekdarî dimeşînin. Ji van cebha yên xuyane "Cebha Watanî Demokrata Îraq", "Cebha Wetanî Demokrata Netew Îraq" û cebha ku ji alîyê Îran'ê "Cebha Îslamî" ne.

Hêzên hember rejîma Sedam; ji bo piştgirtîyên bi hêz û fireh pêk bên di nav-berên xwe de xebatan dikin. Di Zawît'ê kemîn vegirtin. Sereskerek û 9 esker kuştin. 3 esker birîndar kirin. Ereba dijmin pejirandin. Dîsa li nêzî gundê pebîznê li nav-bera Dihok û derebûf'ê di ser rê de kemîn vegirtin. TIR û erebek polis kete kemînê û hatine şewitandin. Yuzbaşîyek û du çawîş hatine kuştinê. Şoforê TIRê birîndar bû.

– Şeva 5.1.1983a, pêşmergan li Musul'ê taxa Bab El-Şems'ê bimbe avêtin cemsa polîsan. Du polîs kuştin. Polîsek birîndar bû.



Şerê navbera hêzên pêşverû û paşverûkên Rojhelata-Navîn li ser girêka Îraq'ê kom bû ye. Li vê hêllê bersîv xwe bi dijwarî sipartin e. Paşverûkên Rojhelata-Navîn mîna Emîrên Ereb, Suûdî, Urdun, Misir hwd. bi hemû hêz û destikên xwe piştgirtîya rejîma Sedam dikin. Hêzên hember û sazûmanên pêşverû, mîna Sûrî, Libya hwd. li dijî rejîma Sedam tekoşînên eşkere dimeşînin. Ku bi hêzek dij-Emerîkî rejîma Îran'ê li Rojhelata-Navîn afirî pê de; ji du salan ve ku bi Îraq'ê re di şer da ye. Û vî şerî hê didomîne.

Li Kurdistan'a Başûr û li Îraq'ê gellek rêxistinên Ereb û Kurdan di derdora têkilîyên bi van hêzên biyan de sazbû ne û vê rewşa ērinî kêrî xwe meşandina tekoşînên hemberîyê de, hêzên li dijî dîktatora Sedam bi giranî xwe li hêllên Kurdistan'ê disipêrin. Li vê hêllê, her rêxistin bi tevger û amancên xwe tevgersazîyan pêk tîne û li hember rejîmê şerên xwe didomî ne. Di rewş û dijwarîya hoyên çile de, li hember rejîmê, tevger û tekoşîn bê rawestandin têne domandinê. Hêzên hember rejîmê, her ro di weşîn û radyoyên xwe de tevger û pêkanînên çekdarî dîyar dikin. Û li ser hev her heftî bi hejmarek pirane tevger têne weşandinê. Ji van dîyarkirina pê de her meh tevgerên pêk hatine dîyar dibin. Ji weşîn û dîyarîyên rêxistinek ev yek dîyar bûn:

– Di 2.1.1983an de pêşmergan nêzî gundê Babîl'ê li rêya Dihok û

– Di 7.1.1983a pêşmergên şirîkî yên refê PDK-Î û PSK-Î bi hevkarî li Kelekyasinaxa dijî dijmin kemînek vegirtin. Ereba dijmin hilweşandin. Yuzbaşî û berpirsîyarekê BAAS'ê hat kuştin. Şeva 20.1.1983a, pêşmergan li hêlla Suleymanîyê, dora Çarta êrîşî ser merkeza polîs û alaya Talparêz'ê kirin. Gellek çekên giran hilweşandin. 5 esker kuştin. 6 esker birîndar bûn.

–Hêzeka şirîkî ya pêşmergên PDK-Î û PK-Î ê êrîş birin ser hêza hêlla Karacem'ê ya eskerîya Hîzawa. 53 ê eskerên dijmin kuştin. 34 esker birîn bûn. Panzêrek û 3 cemsên eskerî hilweşandin û 5 qawîşên eskerî pejirandin. 24.1.1983an pêşmergan li cadda Mandeş û Dihok'ê hember dijmin kemîn



vegirtin. Cemsek eskerî kete kemînê. Subayek hat kuştin û 3 esker hêsîr girtin. Gellek çekên dijmin hildan.

–Pêşmergan; di 15.2.1983an de, li gundek stratejîk gundê Kasrok, casûsek bidarvexistin. Û di 17.2.1983an de li rêya navbera Dihok-Mangeş'ê, hember dijmin kemîn danîn. Panzer reviya bi êrişa pêşmergan cemse hatin hilweşandin. 7 esker hat kuştin û 5 esker birîn bûn. Li hêlla Suleymaniyê nav-bera Kenar û Çawartê kemîn girtin. Di kemînê de erişkirin ser cemsên esker û polisan. 5 polîs hat kuştin. 11 kes birîndar kirin. 15 esker kuştin. Cemsa hilweşandin. Li hember vê kemînê dijmin êrişî ser gundê Mîkokiyan kir. Li vê bi işkence û lêdanan du welatî kuşt û yek birîndar kir.

–Pêşmergên refa şirikî yên PK-Î û PDK-Î'ê avêtin ser Aqr'ê. Êrişî merkeza BAAS a faşîst, mala berpirsîyarê polîs, yuzbaşî Abbas Xidir û êrişî mala subayê casûs kirin. Berberî dirêj domiya. Ji seet 22⁴⁰a berberî domiya. Li ber PTT ji ser caddê pêşmergan kemîn vegirtin. Panzêrek ket kemînê. Hemû kesên wê hat kuştinê. Di vê berberiya giran de pêşmergê PDK-Î Mam Şêx Ehmed-Suriçî şehît ket.

Evan bûyeran ji hin bûyerên nû hatine diyarkirinê ne. Li gohra weşîn û diyarkirinên meha çile, bi hûr û girî gellekî tevger pêk hatin e. Ji 115an zêdetir esker hatin kuştin, 17 cemsên eskerî, 5 qawîş hilweşandin e. 9 subay û berpirsiyarê casûsî hatî kuştin. 7 esker hêsîr ketin e, 7 cahş hatî kuştin û gellek destikên çeka ketî dest. Cahş jî yên ku têkiliyên wan bi rejîma Sedam re ye, û li hember hêzên dijî rejîmê û li dijî gel şer dikin ji wan re tê gotinê. Dişa li gohra daxûyana meha Sibat'ê, ji 20î zêdetir tevger pêk hatin e. 6 casûsên eskerî hatî hilweşandinê. 2 subay û 2 berpirsîyarên casûs, 6 cahş, 50 esker û polîs hatiye kuştinê. 35 esker û polîs birîndar bûne, 6 esker hêsîr girtine û gellek destikên çekan hilgirtin e.

Ji ber ku bi hêza xwe ya dewletê rejîma Sedam li hember hezên dijber xwe nagihe, bi pere û çekan di nav gel de hêzên milîs saz dike.

Ev tevger û pêkanînên yên çend rêxistinên ku li hember rejîma Sedam bikar hatin e. Ji van rêxistinan pêştir, gellek rêxistin û hêz li hember rejîma Sedam tevger datînin. Her ro tevger û pêkanîna bûyeran tê bihîstinê. Rêya vê yekê heye ku ber bi navînê ve li hember rejîma Sedam tevger pêşdetir bibin. Ku, "Cebha Wetan Demokratîk a Îraq" di belavoka xwe ya 16 ê Çile de daxûyan dike; wê "**li hember rejîma Sedam, tekoşîna çekdarî pêşdetir biçe** " Di van hoyên dijwar de û bi cihtengkirina hêzên Rojhelata-Navîn, ku tevgerên hêzên pêşverû cih li rejîma faşîst tengkirine û bi tekoşînên hundur xuyaye ku wê rejîma Sedam bi mehên havînê re bikeve rewşeka giran, teng û dijwar. Ku ji îro ve li hin hêllên gundîtî tesîra rejîmê gellek kêm e. Rêya binketina rejîmê ji heye. Lê ji bo vê yekê, bi taybetî dibî ku, hêzên hember rejîmê li ser bersiveka şirikî li hev werin û piştgirtî û hevkariyên hêza were cih. Lê hêzên hember rejîmê, ne vê hevkarî û piştgirtiya fireh pêk anîne û ne ji berberiyên hember hev rawestandin e. Ta ku her ro tevger û bûyerên berberiyên wana têne bihîstinê. Ev rewş, ji bo hêzên hember rejîmê ra, rewşek nerînî ye. Û jariya hêllê hemberê rejîmê ev e. Ji bo hildana vê rewşa nerînî, xebatên ku pêk tên hê bersivên tekûz neanîne, negihandine dawîkî.

Bi kurtebirî, daxûyana van yekan rast e ku; hêzên hundur û der, yên ku hember rejîmê ne, bi bersîvek şirikî li hev werin, yekîtî û piştgirtî pêk binin. Di van rewşê erînî de hilweşandina rejîma Sedam mumkin e ta ku berberiyên navbera hêzên hemberê rejîmê dibine taybetekî ji domandina rejîma Sedam re. Ta yekîtî û piştgirtîya hêzên dij rejîmê pêk nê û li ser vê bingehê tekoşîn pêşve neçi, hilweşandina rejîma Sedam di pêvajoyek nêz de ne hisan e. Hemû pirsgirêk li hevkarî û yekîtiya hemû hêzan û li tekoşînê girêdayî mane.

Îro berpirsiyarî û barekî giran xwe li hêzên pêşverû û weltahizên Kurd û Ereban girtî ye. Barek dirokî li pêş wa ye. Bi daxwaz û hêviya pêkanîna vê berpirsiyariyê...

**Bijî hevkarî û tekoşîna gelên Rojhelata-Navîn împeryalîzm û paşverûkên hêllê!**

15 ê Adarê 1983
A.C.

# 1 GULAN



ROJA tekoşîn û berxwedana karker û kedkarên cîhanê li karker û şervanên meydana, li şervanên zindan û çîyan pîroz be!

Cunta faşîsta qolonyalîst li hember hemû mafên mirov û gelî, bi zilm û zorbazîyên nedîtî şerê tunekirin û melisandina tekoşîn û berxwedana karker û gelên Kurdistan û Tirkîyê bi dijwarî didomîne. Bi pêmayîna xwe ya dîrokî li hember çîna karkeran, li dijî kedkar û gelan êrîş û zorbazîyan bi hemû destikên xwe yê nemirovî dimêşîne. Vê di dema me de, gihandîye qeysa dij hişê mirovan.

Bêşik êrîş û zorbazîyên burjuvayê Tirk, ji demên berê dijwartir li ser gelê me têyî meşandinê. Lewra; pêkanînên qolonyalîstî, karker û kedkarên gelê Kurdistan'ê gihandibû ber qeysa xwenebawerî û tunebûnê. Hemû taybetên gelê Kurdistan, bîr û bawerî, xasîya berxwedanê, çand û taybetên netewî



û civakî pejandî bû. Netewbûna xwe li serê vedigirtîya. Û bi vê amancê bi abûrî, sîyasî, civakî, çandî û hwd. Kurdistan'ê dipejirand. Di gellek hêllan de amancê xwe yê nemirovî pêk anî bû. Li ser taybetên welatî û gelî bi zerpên dijwar, bi pêkanînên qolonyalîsta kevnare di rêya tunekirinê de gelê Kurdistan, diherikande dûrîya dîrok û hemdemê. Bi van hoyên dijwar de, bi rewşa civaka qels, taybet û rojên kedkar û gelên bindest derbikeve, di hoyên xwe yê dijwar de, bi pergalên hemdemî, xwedî li taybetên xwe yê netewî û civakî jî dernedikeт. Li ser bingehê hemdemî taybetê mirovaya xwe bi her qeysî nediparêst. Taqeta parastina taybetên civak û netewî berçav nedibûya. Û li hember wî dijminê dijwar, xwe bi pergalên hemdemî nedixemland.

Salên '70yan, ji gel û kedkarên Kurdistan'ê re bûn destpêka pêvajoka nûh, û rêyeka nûh vebû. Bi vekirina vê pêvajoka nûh li rêya hebûna gelê Kurdistan li hawîrdorên Berxwedana Tekoşîna Serxwebûn û Azadîya Kurdistan û ji bo gihîştina dewran û dîroka hemdemî kom bû. Xwe di rêya hebûn û jîyan domandinê de bi tekoşîn û berxwedanên bê emsal li ser milê karkeran rê girt. Taybetên gel û civakê li ser hîmên berxwedanê bi xwîn û fedekarîyên giran ronahî bûn, geştir bûn û gelê Kurdistan'ê di rêberîya *Partîya Karkerên Kurdistan* de li hember qolonyalîsta Tirk, sazûmana nemirovî rawest. Hebûna xwe li ser taybetê hemdemî ava kir. Û qurna sazûmanên qolonyalîsta Tirk hejand. Hîmê rizgarîyê bi êş û wundabûnên giran, li Kurdistan'ê vegirt. Bu hogirê dîroka hemdem.

Li ser pêmayînên şoreşgerî bi bawerîya şoreşê, bi xemla şoreşgerî ji bo pêşvebirina tekoşîna serxwebûn û azadîyê, bi piştgirtina karker û gelên cîhanê bi taybetên kedkarê cîhanê gelê Kurdistan; û tekoşerên şoreşê li meydanên şer, li çîyan, li zindan û hêllên Kurdistan'ê, taybetên roja karkerên cîhanê, di şer û berxwedanan de di kemilînin. Xwe pêşdarê şerê serxwebûnê dikin.

Bi amanca piştgirtina kedkarên cîhanê federasyona me bi bîr û bawerîya tekoşîna Kurdistan'ê di sefên karker û kedkarên Swêd'ê, xwe pêşdarê meşa Yekê Gulan'ê kir. Bi hevkarî û piştgirtîya karkerên Swêd; karker û kedkarên koçberê welatan, bi deng û hevkarîya hêzanan li meydanan meşîyan.

*** BIJÎ YEKÊ GULANË!**

*** BIJÎ TEKOŞÎNA SERXWEBÛNA KURDÎSTAN!**

*** BÎMRE EMPERYALÎZM Û CUNTA FAŞÎSTA QOLONYALÎST!**




Bimre Emperyalîzm, Kedxwarî û Paşverûtî!
Bijî Serxwebûn û Înternasyonalîya Proletarya!
Bijî Proletarya û Tekoşîna Berxwedana Şoreşgerî ya Gelê Kurdistan!